HERDEM RASTÎ
# BasNûçe
ISSN 2148-5305
9 772148 530008
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 104 30 Gulan - 5 Hazîran 2016 basnuce.com

Berken Bereh:
**Bîra netewekî di helbesta wî de veşartiye**



R13

# Reqqa bo kurdan wê bibe serkeftin?



Operasyona li dijî paytexta DAIŞ'ê ya Sûriyê Reqqayê berdewam dike. Encamên siyasî ya operasyonê ji aliyê wê yê leşkerî tevlîhevtir e. Hê jî nayê zanîn ka ev operasyona ku bû sedema tengezariya pêwendiyên Enqere û Washingtonê, wê tenê li bakûrê Reqqayê bigre berxwe yan jî bajêr vegire.

Bendewariya hêzên navnetewî û herêmî ji Operasyona Reqqayê ji hev cûda ye. Li DYA'yê ji bo Demokratan beriya hilbijartinên Serokatiyê serkeftinek pêwîst e. Esed dixwaze bi têkbirina DAIŞ'ê desthilata xwe peyt bike û hêzên kurdî jî hesaba wê yekê dikin ku piştî Operasyona Reqqayê berê xwe bidin Cerablûsê.

R02-3



Nûnerê HRK'ê Ajgeyi:
## Tenê ne çiya, êdî ewropî jî dostê kurdan ne!

"Di 6 mehên dawin de hatûçûna dîplomasiyê li ber çav e. Hejmarek zêde yên serok û berpirsên dewletan, berpirsên siyasî û leşkerî hatine Hewlêrê.

R08-9

Mesrûr Barzanî:
## Nabe ku kurd baca xeletiyên dîrokî bide

"Herger Iraq hevbeşiya rasteqîne li gel Kurdistanê qebûl neke, divê di navbera herdu aliyan de mekanîzmayek bê diyarkirin ku herdu alî bibin du cîranên baş. Jiber ku nabe Herêma Kurdistanê baca xeletiyên dîrokî bide."



R03

**YNK û Goran rapirsiyê dikin mûzayedeya siyasî?** R04-5

**Di ajandaya hikûmetê de çareserî heye?** R06

**KADEP û PDK-T biryara yekîtiyê dan** R11

**Bêkes Nûrî Evdal**
**Dengê bêkesiya kurda** R16

# Reqqa bo kurdan

Yeter Polat - M. Salih Batırhan



Hezên kurdî ku ev demek dirêj e ji bo bihev gehandina Efrîn û Kobanê amadekariya operasyona ser xeta Cerablûsê dikin, ji nişkê ve berê xwe dane Reqqayê. Di ragihandinê de tê gotin ku ev operasyon li ser daxwaza hevbeş a DYA û rejîma Sûriyê hatiye pêkanîn herwiha beriya hilbijartinên Serokatiyê, pêwîstiya Demokratan bi serkeftinekê wiha heye. Tekezî li wê yekê tê kirin ku wê rejîma Esed ji encamên operayona Reqqayê dilxweş bibe û li DYA'yê jî, beriya hilbijartinan weke serkeftinekê demokratan pêşkeşê rayagiştî bikin. Destpêka operasyonê jî eşkere dike ka gelo deskeftiyên kurdan wê çibe û herwiha li pişt deriyên girtî çi hatiye axaftin. Operasyona Reqqayê ji bo Sûriyê û DYA van rastiyan lixwe digre lê daxuyaniyên Tirkiyê, Îran û Rûsyayê nîşan dide ku bendewariyên dewletên li herêmê û hêzên navnetewî ji hev cûda ne.

Yek ji xala girîng a vê operasyonê ew bû ku operasyona li ser hîmê pêwendiyên Pentagon û YPG'ê tê birêvebirin, bû sedema tengezariya navbera Enqere û Washingtonê. Ev tengezarî bixwe bû mijarek ji operasyonê girîngtir. Rexneyên Tirkiyê yên li ser DYA'yê her çend weke li dijî hevkariya Pentagon û YPG'ê bê dîtin jî, di rastiyê de derdikeve holê ku pêwendiyên kurd û DYA'yê, ji hesabên hilbijartinan zêdetir e. Jiber ku cara yekemîn siyasetmedarekê DYA'yê nêrînên xwe yên derbarê YPG'ê de raste rast bilêv kir. Ev yek jî di pêwendiyên herdu aliyan de weke destpêkek nû tê nirxandin.

**Fermandara YPJ'ê operasyonê birêve dibe**

Operasyona li hember paytexta DAIŞ'ê ya li Sûriyê Reqqayê ji 3 milan ve berdewam dike. Operasyon bi beşdarbûna 12 hezar şervanan tê birêvebirin û fermandariya operasyonê jî Fermandara YPJ'ê Rojda Felat dike. Rojda Felat diyar dike ku operasyon li 50 km dûrî Reqqayê destpêkiriye û li navçeyekê 4 km dirêj û 15 km ferehiyê li xwe vedigire. Felat dide zanîn ku operasyon li ser daxwaza xelkê derdora Reqqayê hatiye destpêkirin û dibêje ew ê bi piştevaniya hewayî ya hêzên hevpeymanan bigehin serkeftinê. Hêzên Ehrar el Reqqa ku ji xelkê Reqqayê pêk tê û Lîwa Tehrîr jî li kêleka YPG û YPJ'ê, Hêzên Sûriyeya Demokratîk beşdarê operasyonê dibin. Balkêş bû ku operasyon piştî serdana Fermandarê Hêzên Navend ên DYA'yê Joseph Votel ê ji bo Kobanê û Enqerê destpê kir.

Rêxistina Çavdêriya Mafê Mirovan a Sûriyê ku navenda wê li Londonê ye daxuyand ku HSD bê navber bi çekên giran çeperên DAIŞ'ê topbaran dike. Fermandarekê HSD'ê jî ragihand ku 6 gundên ser bi Reqqayê hatine rizgarkirin.

**Toner: YPG ji PKK'ê cûda ye**

Ji ber helwesta Tirkiyê ya ne razîbûna li hember beşdarbûna YPG'ê ji bo operasyonê, di pêwendiyên Enqere û Washingtonê aloziyan rûda.

Berdevkê Wezareta Karên Derve yê DYA'yê Mark Toner got; "Emê karê xwe yê bi YPG'ê re berdewam bikin." Toner derbarê ne razîbûna Tirkiyê ya derbarê pêwendiyên PKK û YPG'ê de jî got: "Mirov nikare bêje tu pêwendiyek kategorîk di navbera PKK û YPG'ê de nîne lê YPG ji PKK'ê cûda ye." Ev yek weke "Washington girîngî dide hebûna YPG'ê" hate nirxandin.

Wezîrê Derve yê Tirkiyê Mevlut Çavuşoğlu derbarê remza li ser milê leşkerên Amerîkî jî gotibû, "Nexwe dema leşkerên Amerîkî herin herêmên din bila remzên DAIŞ'ê, El Qaîde û El Nûsra jî li milê xwe ve bikin. Toner derbarê van daxuyaniyan de jî daxuyand ku DYA, YPG û PKK'ê wekhev nabîne û got: "Em ê bi berdewamî bidin karê xwe yê hevbeş. YPG li bakûrê Sûriyê hêzek bi bandor e li dijî DAIŞ'ê. Em ê di warê operasyonî û şêwirî de jî piştgiriyê bidin wan. Tirkiyê nêrînên xwe yên derbarê YPG'ê de bi awayek eşkere ragihand, me jî heman awayî ragihand. Em hestyariyên Tirkiyê fam dikin lê weke perçeyek ji HSD'ê em ê berdewamî bidin karê xwe yê ligel YPG'ê."

Derbarê mijara leşkerên Amerîkî yên li herêmê Berdevkê Pentagonê Peter Cook jî ragihand ku hêzên Amerîkî ji bo şêwirmendiya Hêzên Sûriyeya Demokratîk (HSD) li herêmê ne û beşdarê operasyonan nabin. Cok diyar kir ku dibe leşkerên hêzên taybet li hindek navçeyên diyar ji bo berqerarkirina ewlekariyê beşdarê nav hêzên herêmê bibin.

Tê gotin ku dema Generalê Amerîkî Joseph Votel serdana Enqerê kir, Sererkanê duyem ê Tirkiyê Yaşar Gülen jê re behsa nîgeraniya xwe ya derbarê hevkariya YPG û DYA'yê de aniye ziman û gotiye "wê YPG we di nîvê rê de bihêle."

Ji aliyê din ve Wezîrê Derve yê Rûsyayê Sergey Lavrov jî ragihand ku ew amadene piştgiriyê bidin Operasyona Reqqayê. Lavrov da zanîn ku di warê tekoşîna li dijî terorê de Reqqa jî weke Mûsilê gring e.

**Wê kî Reqqayê birêve bibe?**

Piştî rizgarkirina bajêr derbarê rêveberiya Reqqayê de aliyê kurd û DYA di nav planên cûda de jî bin, erebên Reqqayê dibêjin ku ew ê bajêr bernedin. Berdevkê Hêzên Hevpeymanan Steve Warren ragihand ku ewlekariya herêmên hatine rizgarkirin girîng e. Jiber van daxyaniyan pirsa "wê piştî rizgarkirinê kî Reqqayê birêve bibe?" anî rojevê. Derbarê mijarê de Mark Toner ragihand ku divê hevsengiya di nava hevpeymaniyê de baş bê avakirin û rewşa etnîkî û mezhabî ya herêmê liber çav bê girtin. Herçend HSD diyar dike ku ji sedî 60'ê bajêr kurd û ji sedî 40 jî ereb in, pispor dibêjin eger heye ku di dema pêş de ev mijar bibe çavkaniya aloziyek nû di navbera kurd û ereban de.

Erebên ku dixwazin Reqqayê ji DAIŞ'ê rizgar bikin bi awayek eşkere radigihînin ku pêwîstiya wan bi YPG'ê heye. Analîst dibêjin li Reqqayê piştgirî bo ereban zêdetir e û tenê ji sedî 3 yê xelkê piştgirî dide YPG'ê. Her çend Reqqa piştî rizgarkirinê nekeve ser îdareya Federasyona Rojava jî, wê di rêveberiyê de bibe xwedan gotin. Derbarê mijarê de Pisporê Polîtîkayên Derve yê ORSAM'ê Oytun Orhan dibêje: "Erebên Reqqayê piştgirî nadin DAIŞ'ê jî û YPG'ê jî. Heger ji herduyan yekê hilbijêrin wê bêjin 'bila DAIŞ' be."

**Bêyî piştgiriya DYA'yê wê bikevin Cerablûsê?**

Piştî ku Operasyona Reqqayê serkeftî bi encam bû, mijara din ya di rojevê de: 'Gelo kurd dikarin bêyî piştgiriya DYA'yê têkevin Cerablûsê? Eger bikevinê DYA wê ji vê yekê re bibe asteng?' Li gor nirxandinan DYA piştgiriyê nade, lêbelê nabe asteng jî.

Ji hêlekê ve aliyê Amerîkayê ku dixwaze beriya hilbijartinan li Reqqa û Mûsilê serkeftinekê bidest bixe û ji hêla din ve bi derketina aktorên kurd, guherîna hevsengiyên siyasî li dij kurdan. Gelo kurd li gor hesabên xwe, beriya hilbijartinên Amerîkayê rola ku li xwe girtiye wê bilîzin ? Li ser van geşedan û rûdanan me pirsên xwe aresteyî isyasetmedar û akademîsyenên ku herêmê ji nêz ve dişopînin kir.

Endamên ENKS'ê Elî Remî û Elî Enwer Naso, Pisporê Siyaseta Derve yê ORSAM'ê Oytun Orhan, Hindekarê Beşa Pêwendiyên Navnetewî yê Zankoya TOBB'ê Burak Bilgehan, Rojnameger Mistefa Balî, Rêvebrê maseya Rojava yê RHK'ê Mistefa Şefîk, Fermandarê Pêşmerge Sait Çürükkaya û Wezîrê Karên Derve yê Kantona Kobanê Îdrîs Nassan pisporê Rojhilata Navîn û lêkolînerê kurdnasiyê Mutlu Çiviroğlu bersiva pirsên BasNûçe'yê dan.

**Taştekin: Hedef paqijkirina rê ye, ne têketina Reqqayê ye**

Rojnameger Fehim Taştekin ku geşedanên li herêmê ji nêz ve dişopîne dibêje ku DYA'yê ji ber xeta sor ya Tirkiyê, operasyona rizgarkirina Cerablûsê ji aliyê YPG'ê ve rawestand û radigihîne ku di rojevê de Minbîc hebû lêbelê ji ber ku danustandinê bi Enqerê re bi sernektin û berê operasyonê vegeriya Reqqayê. Taştekin eşkere dike ku armanca operasyonê ne têketina navenda bajêr e, paqijkirina riya ji bo Reqqayê ye."

**Endamê ENKS'ê Elî Remî: Ev şerê DYA'yê ye**

Li Iarqê jî û Sûriyê jî hêzên ku DYA çekan didê nikari bi serê xwe tevnagerin. Ev şerê DYA'yê ye. DYA şerî li ser kurdan ferz dike

# wê bibe serkeftin?

û planê operasyonê jî ew bi xwe dike. Eger kurd jî bi ya DYA'yê nekin, wê cih ji kurdan re nehêlin û dijminên kurdan wê şûna kurdan bigirin. Ev biryara DYA'yê ye û ji kurdan re dijminên nû çêbikin. Wê bibin sedema şerê kurd û ereban.

**Endamê ENKS'ê Elî Enver Naso: Hewl didin ku nexşeyeke din çêbikin**

Bakûrê Reqqayê wê were rizgarkirin. Li herêma Cizîrê metirsî heye. Çek çiqas ji herêma kurdan dur bikevin, ewqas baş e. Li şûna em berê xwe bidin wan, divê em di serî de herêmên xwe biparêzin û birêve bibin. Em dibînin ku di proseya nû de wê nakokiyên di navbera kurd û ereban de zêde bibin. Bikaranîna kurdan di vî şerî de tê wateya dewamkirina şer li ser sînorên me û ev jî dibe sedem ku metirsiyên nû rû bidin. Diviyabû di navbera TEV-DEM û hêzên navnetewî de peymanek siyasî hebûya, lê belê em dibînin ku tenê di warê leşkerî de rêkeftinek heye. Di demek nêz de Berdevkê Wezareta Karên Derve yê DYA'yê got, 'Kî li dij DAIŞ'ê şer bike, ew hevalbendê me ye.' Ji ber wê yekê berjewendiya kurdan di vê yekê de tune ye. Tenê ya ku bê kirin, divê em terorê ji sînorên xwe dûr bixin. Meseleya sereke çêkirina nexşeyek nû ye.

**Rojnameger Mistefa Balî: Cerablûs paşê!**

Li gor zanyariyên berdest, heta niha 16 gund hatin rizgarkirin û DAIŞ'ê derbên giran xwarin e. Her wiha li gor zanyariyan di nava bajêrê Reqqayê de jî hin guhertin tên kirin. 250 leşkerên DYA'yê jî di operasyonê de cih digirin. Dem ahatin sînorekî destnîşankirî, ew ê ji bo berfirehkirina operasyonê bixebitin. Piştî Reqqayê wê berê xwe bidin Cerablûsê. Balafirên hêzên hevpeyman jî li bakûrê Reqqayê DAIŞ'ê bombebaran dike.

**Rêveberê Maseya Rojava yê RHK'ê Mistefa Şefîk: Pozîsyona kurdan wê çi be?**

Ji destpêka qeyrana Sûriyê heta niha cara yek DYA yekser piştgiiryê dide hêzên kurd û rayedarên pilebilind serdana Rojava û Kobanê dikin. Reqqa paytexta DAIŞ'ê ye, êrişa li ser vir wê bibe sedema şikestina DIAŞ'ê. Ev geşedan nîşan didin ku wê hevsengiyên leşkerî û siyasî biguherin. DYA'yê heta niha di warê leşkerî de piştgirî dida, lê cara ewil piştgiiriya siyasî jî da. DYA niha ligel kurdan e û hêvî dikim ku kurd xetayekê nekin. Eger cihên stratejîk yên wek Helep, Heseke û Deyrezorê ji DAIŞ'ê werin paqijkirin, ji xwe Cerablûs wê bikeve. Pirsa sereke ev e: Piştî ku Reqqa hat girtin, rewşa kurdan wê çi be?

**Fermandarê Pêşmerge Sait Çürükkaya: Diviyabû operasyonên Reqqa û Mûsilê ligel hev bûna**

Bi stratejiyeke sînordar heta derekê wê biçin û dema lê nêrîn ku DAIŞ nikare li



ber xwe bide, wê dewam bikin, lê eger rastî berxwedanekê werin, wê hin herêman kontrol bikin û DAIŞ'ê asê bikin. DYA û kurd dixwazin wê deverê bixin bin kontrola xwe. Bi ya min eger li Mûsilê biryarek neyê wergirtin, li Reqqayê pêşketinek çênabe. Diviyabû operasyonên Mûsil û Reqqayê bi hev re bimeşiyana. Divê ji bo Cerbalûsê formulekî ku Tirkiye jî di nav de bê dîtin. Divê ji bo Mûsilê jî tiştek bê kirin. Wê demê wê di DAIŞ'ê de şikestinek çêbibe.

**Fermandarê Pêşmergeyên Roj Nazif Üren: Em ji dixwazin weke ereban ji bo welatê xwe şer bikin**

Em dixwazin şer bikin û parastina welatê xwe bikin. Çawa Hêzên Sûriyeya Demokratîk hene divê em jî hebin. Em amade ne şer bikin. Fikrên PYD'ê yê li hemberê me baş nînin. Ligor fikra me jî ew Kurdistanî nînin. Weke Pêşmergeyan em dibêjin em jî zarokên vî welatî ne. Weke Pêşmergeyan em jî dixwazin beşdarî vî şerî bibin. Çima şerê mil bi mil ê bi ereban re qebûl dikin û naxwazin em jî ligel wan şer bikin. Fikra xwe ya di derbarê me de beriya bi çend rojan bi daxuyaniya xwe anîn ziman. Gotin, 'Pêşmergeyên Rojava çete ne' mixabin ev hat gotin. Em ê tu carî li dijî hêzêke kurd peyva çete neynin ziman. Radigihînin ku eger em herin ew ê şerê birakujiyê pêk were. Em bi tu awayî şerê birakujiyê qebûl nakin.

**Wezîrê Karên Derve yê Kobanê Îdrîs Nassan: Wê Ceralûs û Minbic jî bê rizgarkirin**

Ew hamleya rizgarkirina bakurê Reqqayê ye. Wisa xwiya dike ku ev şerê niha ew ê ber bi navenda bajêr ve neçe. Azmûn vê yekê nîşanî me dide. Lê wisa xwiya dike ku ew ê Operasyona Minbicê jî di demeke nêz de dest pê bike. HSD ligel leşkerên pispor ê hevpeymaniyê kar dike. Ne rast e ku en hemû xwendinên xwe jî ji ser vê mijarê bidomînin. Bûyerên demdirêj ew ê di demeke nêzde hemû tiştî raberî me bike. Geşedanên heyî bi me dide xuyakirin ku ew ê Minbic û Cerablûs jî bên rizgarkirin. Hêzên kurd û DYA hevpeymanên hevdû ne. Hevpeymaniya leşkerî ew ê bibe hevpeymaniyeke sîyasî jî.

**Akademîsyen Burak Bilgehan Özbek: Weke strateji kurd nêzîkî xweseriyê bûn**

Tirsa Tirkiyê li ser wê yekê heye ku kurd serkeftî ligel DYA'yê ji bin vî şerî derkevin. Di sala 2003'an jî de hêzên bi serkêşiya Talabanî – Barzanî serkeftî bibûn. Niha eger Hêzên Suriyeya Demokratîk ji vê operasyonê serkeftî derkevin Tirkiye ji wê yekê ditirse ku li bakurê Sûriyê herêmeke xweser ava bibe. Hevkariya DYA'yê operasyonên serkeftî yên Hêzên Sûriyeya Demokratîk nerazîbûnê bi hikûmeta Enqerê re çêdike. PKK li dijî DAIŞ'ê weke hêzêke sekûler derdikeve pêş û PKK bi vî awayî xwe meşru dike. Ew tiştê ku PKK'ê û welatên Rojava jî nêzîkî hevdu dike ev e. PYD jî heman karî dike. Ez naxwazim cudahiyê bixim navbera wam PYD û PKK rêxistinên gelekî nêzîkî hevdune. Eger bixwazin li herêmê ji xwe re herêmeke xweser ava bikin ev jî normal e û ew ê ten ne bi DYA'yê re ew ê bi Rûsya û YE'yê jî re peywendiyan deynin.

**Pisporê Rojhilata Navîn ê ORSAM'ê Oytun Orhan: YPG bi hêz bibe ew ê bi rejimê re rikberiyê bike**

Bijardeya YPG û PYD ne Reqqa ye. Bijardeya wan Ceablûs û Azaz e. Reqqa bijardeya Amerîkayê ye. Lewre Amerîka li wir bi perspektîfa şerê li dijî DAIŞ'ê tevdigere. Ji ber wê çendê jî divç cihê ku rêxistin lêç bi hêzê ji destê wê bê derxistin. Obama dixwaze bi serkeftinekê biçe. Tesîra wê yekê jî heye. Lêbelê divê mirov tenê ji ser vê perspektîvê şîrove neke. Eger Reqqa bê rizgarkirin dixwazin Reqqayê jî bixin nava vê federasyonê. Eger Reqqa bê rizgarkirin ew ê YPG serweriyê li gelek herêman de bike. Eger Reqqa neyê rizgarkirin ew ê hertim xetere li ser bajarên kurdan hebe. Tirkiyê nerazîbûna xwe ya li hember pêşdeçûnên YPG'ê hertim anî ziman. Eger Operasyona Reqqayê bi serkeftî encam bibe û DAIŞ ji Minbic û Reqqayê jî bi hêsanî bê derxistin. YPG bi hêz bibe ew ê pêdawîstiya wê ya bi rejimê re bi dawî bibe. Di siberojê de mimkune li herêma Qamişlo û Hesekê di navbera rejim û YPG'ê de arîşe û pevçûn rû bidin.

**Lêkolînerê Rojhita Navin û kurdnasiyê Mutlu Çiviroğlu: Îhtîmala wê yekê heye ku YPG berê xwe bide Minbicê**

Reqqa weke navenda DAIŞ'ê ye û girîngiyeke wê ya sembolîk heye. Çawa ku li Iraqê Mûsil e, li Sûriyê jî Reqqa ye. DYA radibe û dibêje Reqqa. Heta Reqqa ji Mûsilê jî girîngtir e. Ji ber wê yekê ev çend mehe aliyê amerîkî dixwast Reqqa be, lê YPG'ê dixwast Mınbic, Cerablûs be. Du alternatîf hene ji vê Minbîc û Cerablûs ji ber nerazîbûna Tirkiyê lawaz bû. Xeta ji Kobanê diçe Efrînê girîngiya YPG'ê bû. Amerîka çend mehên din wê hilbijartinên xwe pêk bîne. Serkeftinek li aliyê Reqqa an jî lawazkirina DAIŞ'ê li Reqqayê wê destê demokratan xurtir bike. Ev jî dibe motîvasyon ku di destpêkê de dixwaziin Reqqa be.

Niha operasyon bi navê bakûrê Reqqayê ye, li bakûrê Reqqayê deverek berfireh heye Minbîc, Bab jî bakûrê Reqqayê ye. Bawer dikim ev nav bi taybet hatiye çêkirin. Pêkane ku ber bi aliyên din jî pêşdeçûna hêzên HSD û YPG'ê hebin. Ber bi Rojavayê Çemê Feradê pêş ve biçin. Dema mirov yekser ji Minbîc û Cerablûs destpê bikira wê reaksiyon zêdetir bûya. Bi vî awayî nerazîbûn hatin kêmkirin. Hem Amerîka kêfxweş dibe û di heman demê de êrişek ber bi navenda DAIŞ'ê ve tê kirin. Îhtîmaleke mezin e ku YPG û hevalbendên wê di demên pêş de li gor şert û mercan dikarin berê xwe bidin Minbîcê ji bo ku Efrîn û Kobanê bigihînin hev du.

# YNK û Goran rapirsiyê dikin mûzayedeya siyasî?



Zeyat Brusk

Li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) dengvedana rêkeftina di navbera Tevgera Goran û YNK'ê de, xala sereke ya rojevê ye. Aliyan daxuyandin ku wê bi komîsyonek hevbeş li gel hemû artiyan hevdîtinan bikin. Endamê Polîtbûroya PDK'ê Cefer Emînkî ragihand ku ew ê di van şertan de pêşwaziya Goran nakin û bi vî awayî deriyê hevdîtinên li aliyan girt. Di vê navberê de ji bo pratîzekirina rêkeftinê gavên yekem hatin avêtin. Di nava hefteyê de, di çarçoveya plana vegirtina aliyên din ên siyasî bo nav rêkeftinê, komîsyonek hevbeş ê YNK û Goran ligel berpirsên Komela Îslamî hevdîtin pêkanîn. Piştî hevdîtinê berpirsên Komel daxuyandin ku ew hizra beşdarbûna rêkeftinê nakin. Li Herêma Kurdistanê bi vê rêkeftinê gumana avabûna îdareyek du serî berdewam dike.

Di demek wiha de Parêzgarê Kerkûkê û Endamê Mekteba Siyasî ya YNK'ê Necmedîn Kerîm ji radyoya Sawa reaxivî û diyar kir ku ew dixwazin Kerkûk bibe herêmek serbixwe. Ev daxuyanî di ragihandinê de weke "YNK dixwaze rapirsiya serxwebûnê bike mijara mûzayedeya siyasî" hate nirxandin.

Li RHK'ê ji aliyekê ve aloziya siyasî ya ji ber rêkeftina Goran û YNK'ê berdewam dike û ji aliyê din ve çala-kiyên ji bo piştgiriya rapirsiya serxwebûnê berdewam dikin. Di nav hefteyê de li bajarê Duhokê û li navçeya Soran a Hewlêrê, "Karnavala Piştgiriya Serxwebûnê" hate lidarxistin. Derbarê rapirsiyê de ber-pirsên RHK'ê jî daxuyaniyên zelal didin. Berpirsên Pêwendiyên Derve yê PDK'ê Hêmin Hewramî ragihand ku piştî arambûna rewşa li Bexdayê, beriya destêkirina amadekariyên rapirsiyê wê şandek ji RHK'ê here Bexdayê û ligel berpirsên Iraqê mijara rapirsiyê gotûbêj bike.

Akademîsyen û siyasetmedaran rewşa li RHK'ê û geşedanên li rojevê ji bo BasNûçe nirxandin.

**Akademisyen Herdewan M. Kakeşêx: YNK rapirsiyê dike mijara mûzayedeya siyasî**

Derbarê rêkeftina di navbera Tevgera Goran û YNK'ê de akademisyen Herdewan Mehmûd Kakeşêx bo BasNûçe'yê axivî û diyar kir ku Goran wan planên xwe yên ku dixwest di nava hikûmetê de peyrew bike lê serneket, dixwaze bi rêya vê rêkeftinê cîbicî bike. Kakeşêx daxuyaniyên Waliyê Kerkûkê Necmedîn Kerîm jî weke mûzayedeya siyasî nirxand û got: "Dema mirov li naveroka rêkeftina di navbera Goran û YNK'ê mêze dike, tê dîtin ku tevahî plan û projeyên Goran ên ku di dixwest di nav hikûmet û Parlamena Kurdi-stanê de cîbicî bike, di nav de xal bi xal cih digrin. Hemû xal xizmetê projeyên Goran dike. Pêşniyarên weke, bila sîstema rêveberiya herêmê bibe sîstema parlamenî, kêmkirina erk û berpirsiyariyên Serokatiya Herêmê û guhertina şêweyê hilbijartinan û pêşniyarên din tev de ew proje bûn ku Goran disepand û PDK'ê qebûl nedikir ku ev proje bibûne serdema qeyrana siyasî ya RHK'ê. Herdewan Mehmûd Kakeşêx derbarê daxuyaniyên Necmedîn Kerîm ê derbarê statûya Kerkûkê de jî wiha axivî: "Dihate meraqkirin ka gelo wê ev rêkeftin karîgeriyek çawa li rapirsiyê bike. Di nava hefteyê de Parêzgarê Kerkûkê Necmedîn Kerîm got, 'wê Kerkûk ji Herêma Kurdistanê cûda, bibe herêmek serbixwe'. Ev yek jî dide nîşandan ku wê YNK û Tevgera Goran rapirsiyê bikin mijara mûzayedeya siyasî."

**Akademîsyen Arif Qurbani: Hêza RH'ê heye ku vê qeyranê derbas bike**

Derbarê mijarê de akademîsyen Arif Qurbanî jî qeyrana siyasî weke "bedbextî" pênase kir û diyar kir ku tiştek nexweş e ku di demê de li Başûrê Kurdistanê rapirsiya serxwebûnê di rojevê de ye ku ev mijar ji bo paşeroja kurdan gelek giring e, qeyranek siyasî heye. Qurbanî got: "Qeyranek siyasî ya ne pêwîst derxis-tin. Bawer dikim ku çêkerên vê qeyranê jî ne dixwestin encamên wî wiha bin. Jiber vê qeyranê hikûmet û parlamen ji kar ketine, sazî û dezgehên me yên rewa kar nakin. Beriya salekê me behsa yekîtiya neteweyî û serxwebûna aborî dikir. Niha jî em behsa perçebûnê dikin. Di demekê de ku rapirsiya serxwebûnê di rojevê de ye, PDK dixwaze hemû partî di bin banekê de bên gel hev û ji bilî rapirsiyê ti tiştek din nese-pînin. Tevgera Goran jî pêdagirî li ser guhertina sîstema siyasî ya RHK'ê dike. Bi nêrîna min, Goran çend di pêkanîna projeyên xwe de bê sebir tevdigere, PDK jî di helwestê xwe de ew hinde lez dike û ev yek jî dibe sedema kûrkirina qeyrana siyasî ya îro. Divê neyê jibîr kirin ku di dema şerê navxweyî de qeyran ji ya îro kûrtir bû û xiraptir bû. Lewma RHK'ê dikare qeyranê çareser bike û derbas bike. Tenê bila alî hewl bidin ji hev fam bikin."

**Dr. Kemal Kerkûkî: Kerkûk bajarek Kurdistanê ye û wê wisa jî bimîne**

Berpirsê Eniya Rojavayê Kerkûkê Dr. Kemal Kerkûkî jî derbarê rewşa li eniyên şer û daxuyaniyên Nec-medîn Kerîm de bo BasNûçe axivî û diyar kir ku ew axên ku bi xwîna Hêzên Pêşmerge hatine rizgarkirin, ji bilî îdareya RHK'ê, nakevin bi ti îdareyek din û wiha got: "Hêzên Pêşmerge bi biryare ku her bostek axa Kurdistanê ya di bin dagirkeriya DAIŞ'ê de rizgar bike. Hemû herêmên Kerkûkê jî di nav vê planê de ne. Nayê qebûl kirin ku ew axên bi xwîna Pêşmerge hatine rizgarkirin, ji bilî îdareya RHK'ê, bikevin bin îdar-eya rêveberiyek cûda. Kerkûk bajarek Kurdistanê ye û wê wisa jî bimîne. Li pêşiya me proseya rapirsiyê heye. Wê gelê Kerkûkê bixwe derbarê paşeroja xwe de biryar bide û bibe îradeya biryarê."

**Şaxewan Abdullah: Wê herêmên ku Pêşmerge rizgar kirine nebin mijara bazariyê**

Derbarê daxuyaniyên Necmedîn Kerîm de Endamê Komîsyona Parastin û Ewlekariyê ya Parlamena Iraqê Şaxewan Abdullah jî diyar kir ku Kerkûk bi destê Pêşmerge hatiye rizgarkirin û jiber vê yekê jî nabe mijara bazariyê û wiha axivî: "Beriya niha jî me pêşwazîkirina Heşdî Şe'bî ya ji bo Kerkûkê rexne kiribû. Pêgeha Kerkûkê pir hestyar e. Rejîmên berê yên Iraqê di çarçoveya polîtîkaya "Erebkirina Kerkûkê" de xwestin avahiya demografîk a bajêr bigûherin. Li hember vê kurdan ji bo Kerkûkê berdêlên mezin dan. Divê neyê jibîr kirin ku heger Hêzên Pêşmerge nebana wê îro ev bajar jî di bin dagirkeriya DAIŞ'ê de ba ya. Jiber vê yekê, Kerkûk û herêmên din ên Kurdistanê yên bi xwîna Pêşmerge hatine rizgarkirin, nabin





mijara baza-riyê."

**"Ji bo operasyona Mûsilê hevdîtin hene"**

Abdullah derbarê îdîayên li çapemeniyê ku tê gotin wê piştî operasyona Felluceyê operasyona Mûsilê bê rojevê û Hewlêr û Bexdayê jî li ser vê yekê lihev kirine, axivî û wiha got: "Artêşa Iraqê li bajarê Felluce operasyonên xwe dike ku ev bajar 60 km li başûr û rojavayê Bexdayê ye û herwiha kelha DAIŞ'ê ya beriya Mûsilê ye. Di vê operasyonê de mijara sereke nêzîkatiya Heşdî Şe'bî ya li dijî Erebên Sunne ye. Xelkê sivîl û siyasetmedarên Sunne nerazîbûna xwe li hember beşdarbûna mîlîsên Şîe ya vê operasyonê nîşan didin. Bê guman ev operasyon wê ji bo operasyona Mûsilê jî bibe ronahiyek. Lê derbarê vê operasyonê de ti rêkeftinek di navbera Hewlêr û Bexdayê de nîne. Hevdîtin û daxwazên siyasî hene. Şertên RHK'ê jixwe eşkere ne. Di serî de RHK'ê dixwaze DAIŞ ji Mûsilê bê derxistin da ku nekare bibe gef li ser ewlekariya Kurdistanê. Heman awayî RHK'ê naxwaze Heşdî Şe'bî beşdarê vê operasyonê bibin û li herêmê bibin ge-fek nû. Şertên din jî ew e ku RHK'ê naxwaze Baasiyên berî û erebên şovenîst di rêveberiya Mûsilê de cîh bigrin."

# Barzanî: Em ji bo serxwebûnê amade ne

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di hevpeyvîneke ligel rojnameya Neue Züricher Zeitung a Swêsreyî behsa encamdana referandumê û serxwebûna Kurdistanê kir û ragihand, sînorên deverên ji nav çûne û pêwîst e ew rastî bê qebûlkirine û bê naskirin. Barzanî li ser sînorê heyî yên li devera Rojhilata Navîn jî axivî û got: "Hêzên mezin ew sînor danîne. Di pratîkê de ew sînor nemane û dema wê yekê jî hatiye ku ew rastî bê naskirin û bê qebûlkirine." Derbarê pêkvejiyana netewan û gelan de jî Barzanî da xuyakirin: "Her milletekî sînorê xwe yê xwezayî heye. Ew sînorên ku bo zora hêzê hatine xêzkirin, nabe êdî berdewam bin." Serokê RHK'ê amaje bi li dar xistina referandumê li Başûrê Kurdistanê kir û got, pêwîst e ji gel bê pirsîn ka gelo ew dixwazin pêkve bijîn an jî dixwazin cuda bibin. Mesûd Barzanî got: "Nabe ti çareseriyek were ferzkirin û her çareseriyeke nû gerek bi referandumê be."

Li ser şerê DAIŞê Barzanî daxuyakirin, ku şerê DAIŞê, karê herî li pêş ê wan e. Derbarê Mûsilê û operasyona rizgarkirina Mûsilê de jî Barzanî nêrîna xwe wiha anî ziman: "Em ji şerê Mûsilê re amade ne, lê belê gerek Hikûmeta Iraqê û amerîkî plana êrişê û rêvebirina wê (Mûsilê) piştî rizgarkirinê diyar bi-kin...Girin gtir ji mijara rizgarkirina Mûsilê, diyarkirina îdarekirina vî bajêrî piştî şer e." Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di berdewamiya axavtinên xwe amaje bi parçeyên din ên Kurdistanê jî kir û got: "Bêgu-man em pêşwazî li wê dikin ku netewa me ku 40-50 milyon kes e, dewleteke xwe hebin, lê belê gerek rewş li ber çav bê girtin. Em bi ser 4 parçeyan de dabeş bûne, û her yek ji me jî rewşa xwe ya taybet heye û her yek ji wan jî pêwîst e çareseriya xwe ligel hikûmeta navendî bibîne." Derbarê serxwebûna Kurdistanê de Barzanî destnîşan kir, ku Kurdistan bo serxwebûnê amade ye. Derbarê dema encamdana referanduma li Başûrê Kurdistanê de jî Barzanî dibêje, referendum dê îsal were pêkanîn.

**'Ti tiştek li pêş mafên me yên rewa nikare bibe asteng'**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî bi helkefta 40. salvegera "Şoreşa Gulanê" daxuyaniyek weşand û got: "Şoreşa Gulanê li hemberî zilm û sîtem û dagîrkeriyê berdewamiya xebat û qurbanîdana gelê Kurdistanê bû û ew şoreş hilgirê peyam û armancên Şoreşa Mezina Eylûlê û yek ji qonaxên girîng ên berxwedana Pêşmerge û gelê Kurdistanê bû. Mesûd Barzanî di peyama xwe de got: "Peyama Şoreşa Gulanê peyama berdewamî û berxwedan û pêdagiriyê bû li mafê rewayên gelê me û dirêjiya şoreşên dinê gelê Kurdistanê bû. Berhema Şoreşa Gulanê yekrêziya hêz û aliyên gelê me bû ji bo raperîn û federalî û piralî û hilbijartinê û avabûna dezgehên Herêma Kurdistanê ku her hemû destkeftên giranbihane ku bi xwîna Pêşmerge û qurbanîdana gelê me pêkhatine."

Barzanî diyar kir ku niha gelê Kurdistanê ji her demekê zêdetir nêzîk armanca xwe bûye û cîhan bi çavê rêz berê xwe dide destkeftên gelê Kurdistanê û got: "Kêmtirîn wefa ji bo qurbanîdan û êşên gelê me û xwîna şehîdan pêkanîna tevahiya mafên diyarkirina çarenûsa gelê Kurdistane. Eve dûrî li berjewendiya hizbî û bi baweriyekî tevahiya bi mafên gelê me, berpirsiyariya dîrokî û erkeke li ser milê hemû hêz û ali-yên siyasiyan." Serokê RHK'ê herwiha tekez li peyama pêkvejiyan û aştîxwaziya gelê Kurdistanê kir û anî ziman, ti berbest û astengiyek nabê sedema wê yekê ku mafên rewa yê gelê Kurdistanê neyê standin.

**Barzani ligel balyozên Îngiltere û Romanyayê civiya**

Li RHK'ê hevdîtinên dîplomatîk jî berdewam dikin. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li Ofisa Serokatiya He-rêmê ya li Selahadînê pêşwaziya Balyozê Îngiltere yê Iraqê Frank Baker û Bayozê Romanyayê yê Bexdayê Jakob Pirada kir. Di hevdîtinê de rewşa Irak û Herêma Kurdistanê û herwiha rewşa şerê DAIŞ'ê hate gotûbêjkirin. Balyozê Romanyayê Jakob Pirada jî tekez kir ku welatê wan li çarçêweya hevpeymaniya navdewletî ya dijî DAIŞ'ê de weke hevbeşek temaşa Kurdistanê dike û li hevkarîkirina Kurdistanê ya li şerê dijî DAIŞ'ê de berdewam dibe. Balyozê Romanya nîgeraniya xwe di derbarê pêşhatên siyasiyên dawî ya Iraqê jî ragihand. Serokê RHK'ê jî, ji bo hevkarîkirina Kurdistanê li şerê dijî DAIŞ'ê spasî li gel û dewleta Romanya kir.

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li bajarê Hewlêrê beşdariya rewresma salvegera 70 saliya serbixweyî ya Şahnişîna Urdin û sed saliya şoreşa mezina Erebî kir. Di vê rêwresmê de ku ji aliyê Konsolxaneya Şahnişîna Urdinê li Otela Rotana ya Hewlêrê hatibû saz kirin, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî û konsol û nûnerên welatan û kesayetiyên siyasî û berpirsên îdarî û hizbî yên Herêma Kurdistanê amade bûn.

Di destpêka rêwresmê de sirûda niştîmanî ya Şahnişîna Urdin û Iraq û Herêma Kurdistanê hate xwendin û peyama Şah Abdullah Paşayê Urdin ya bi helkefta bîranîna roja serbixweyî ya welatê wan hate xwendin. Paşa Heysem Abulful Konsolê Giştî yê Şahnişîna Urdin li Hewlêrê gotarek pêşkêş kir û têda spasî bi amadebûna Barzanî kir û her wiha pesnê biha û rewşt û ehleqa bilind û xebat û qurbanîdana gelê Kur-distanê kir û ji bo hewandina koçber û lêqewimiyan bi pêzanînê ve behsa dilfirehiya xelkê Kurdistanê kir. Di rêwresmê de gotara Hikûmeta Herêma Kurdistanê ya bi helkefta salvegera heftih saliya serbixweyî ya Şahnişîna Urdinê ji aliyê Felah Mistefa Berpirsê Fermangeha Peywendiyên Derveyê Hikûmeta Herêma Kurdistanê ve hate xwendin.



## Mesrûr Barzanî:

# Dewleta kurd wê bibe faktora aramiya heremê

Rawêjkarê Civata Ewlekariya Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî ligel Parlamenterê Partiya Parêzgarên Brîtanyayê û Nûnerê Serokwezîrê Brîtanyayê bo Karûbarên Yemen û Serokê Civata Karûbarên Rojhilatan Navîn a Parêzgaran (CMEC),Sir Alan Duncan hevdîtinek pêk anî. Di hevdîtinê de Barzanî diyar kir ku di navbera pêkhateyên Iraqê de bawerî li hev nemaye û pirsgirêka sereke ya Iraqê jî xeletiyên dîrokî ne ku nahêlin ti gave li welat aramî û seqamgîrî hebe. Mesrûr Barzanî amajae bi wê yekê kir ku sîstema têkçûyî berdewam bûye sedema karesatan bo gelên Iraqê û daxuyand ku DAIŞ jî di encama vê sîstemê de derket-iye. Barzanî tekez kir ku Herêma Kurdistanê li dijî DAIŞ'ê şerekî serkeftî kiriye û daxwaza gelê Kurdistanê ya ji bo paşerojê anî ziman û diyar kir ku wek her neteweyekê din ê cîhanê mafê dewletek serbixwe heye. Lewma heger Kurdistan bibe dewlet wê bibe faktorê sereke yê aramiya navçeyê.

Barzanî ragihand ku piştî hilweşandina rejîma Saddam Herêma Kurdistanê bi mercê hevbeşbûnê beşdarê damezrandina Iraqa Federal û Demokrat kiriye, lê belê Bexdayê bi birîna bûdceya Kurdistanê, binpêkirina destûrê berovajî nêzîk bûye û selmandiye ku dixwaze li hember HRK'ê astengiyan çêbike. Mesrûr Barzanî got: "Herger Iraq hevbeşiya rasteqîne li gel Kurdistanê qebûl neke, divê di navbera herdu aliyan de mekanîzmayek bê diyarkirin ku herdu alî bibin du cîranên baş. Jiber ku nabe Herêma Kurdistanê baca xe-letiyên dîrokî bide."



## Partiyên Bakur li dij Waliyê Kerkûkê bi hêrs in

# Divê YNK-Goran îstîqrarê têk nebin

Hêmin Dildar


Mustafa Özçelik | Mehmet Emin Kardaş | İmam Taşçıer | Latif Epözdemir

Dengvedana hevpeymana di navbera Yekîtiya Niştimanî ya Kurdistan (YNK) û Tevgera Goran berdewam in. Hevpeymana roja 17'î Gulanê li Silêmanî, li mala Sekreterê Giştî yê YNK'ê, Celal Talabanî hatiye îmzekirin ji 11 beş û 25 xalan pêk tê. Îmzekirina hevpeymanê ya piştî roja 100 salsaliya Peymana Sykes-Pîcotê, çavdêriya heyetekê ku ji aliyê Wezîrê Îstîqbarata Îranê Seyîd Mahmûd Alevî ve hatiye peywirdakirin, di raya giştî ya Kurdistanê dibe sedemê bertekên mezin. Nemaze bertekên endamên polîtburoya YNK'ê Mela Bextiyar, Erselan Bayîz, Mehmûd Sengavî û Azad Cundiyanî tên axaftin.

Pisporên ku hevpeymana di navbera her du aliyan de, hatiye îmzekirin, dinirxînin dibêjin ku Tevgera Goran ku beriya niha bi hinceta Serokatiya Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) berê miletî dan kolanan, YNK'ê jî dide kêleka xwe û naqokiyên RHK'ê zêdetir dike. Ew dê pêşiyê li ber referandûmê bigirin ku dê îhtîmalekê di payîzê de bê kirin. Goran di nava hewldanekê de ye ku bi şirikatiya YNK'ê li hember PDK'ê "yekîtiyeke dijber" ava dike.

Nûnerên Goran û YNK'ê îddîa dikin ku ev hevpeyman ji bo çareserkirina qeyrana siyasî-ekonomîk ya RHK'ê, ji bo pêkhatina dadmendiya civakî, ji bo çareserkirina pirsgirêkên perwerdehî û dadmendiyê ye. PDK jî eşkere dike ku hevpeyman pirsgirêkan çareser nake, zerarê dide peymana stratejîk ya YNK Û PDK'ê, Goran xisareke netewî pêk tîne. Nemaze piştî hevpeymanê endamê polîtburoya YNK'ê û Waliyê Kerkûkê Necmetîn Kerîm got 'Em dixwazin Kerkûk ji Bexdayê veqete. Ev nayê wê wateyê ku em dê li rex RHK'ê bin. Heta ku referandûm bê kirin dibe ku 3 sal derbas bibin."

Nûnerên partiyên siyayî yên Bakurê Kurdistanê ku pêkhatinên li RHK'ê ji nêzîk ve dişopînin, hevpeymana YNK-Goran'ê û şiroveyên Necmetîn Kerîm yên derbarê Kerkûk'ê de ji BasNûçe'yê re nirxandin.

**Serokê PSK'ê Mesut Tek: Divê rêkeftin aştiya navxweyî xirab neke**

Serokê Giştî yê Partiya Sosyalîst a Kurdistanê Mesut Tek got ku, divê hevpeymana Goran-YNK'ê nebe sedemê zerara aştiya navxweyî û divê nûnerên partiyên siyasî yên RHK'ê ji naqokiyên navxweyî dersekê bistînin. Mesut Tek diyar kir ku qeyranên li RHK'ê ne bi riya hevpeymanan dê bi riya "yekîtiyan" çareser bibin, Bexda pirsgirêkên li RHK'ê kûrtir dike. Di serekaniya pirsgirêkan de hikumeta navendî heye. Wisa hêvî dikim ku hevpeymana YNK-Goran'ê qeyranên nû pêk neyîne. Goran û YNK divê li gel PDK û partiyên din meseleyên xwe bi riya diyalogê çareser bikin. Tek, di berdewamiya axaftina xwe de şiroveyên Waliyê Kerkûk'ê Necmetîn Kerîm yên derbarê statuya Kerkûk'ê nirxandin û got: "Kerîm endamê polîtburoyê ye û ji bo girêdana Kerkûk'ê bi ser Erbîlê ve hewl daye û ev şiroveyên Kerîm bedbextane bûn.

> Nûnerên Partiyên siyasî yên Bakurê Kurdistanê jî tevlî nîqaşên li ser hevpeymana di navbera YNK û Goranê de bûn. Siyasetmedarên bakûrî bertekek tund li hember gotinên Waliyê YNK'yî yê Kerkûkê yên derbarê statuya Kerkûkê de nîşan dan. Dîsa nûnerên partiyên siyasî hişyariyek kirin ku peymana navbera her du aliyan divê nebe sedemê xirabbûna îstîqrara siyasî.

**Serokê PAK'ê Mistefa Özçelîk: Divê Kerkûk bi ser Kurdistanê ve bê girêdan**

Serokê Giştî yê Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) Mistefa Özçelîk behsa hevpeymana YNK-Goranê ya li Silêmaniyê kir û wiha axivî: "Bi êrîşên DAÎŞ'ê li RHK'ê qeyran derketin holê. Qeyranên ekonomîk, siyasî û şer... Divê ev hevpeyman nebe sedemê qeyranên nû. PDK ji vê hevpeymanê aciz e. YNK'ê peymana stratejîk bi PDK'ê re heye. Hevpeymana YNK-Goranê dê zerarê bide peymana YNK û PDK'ê. Divê pirsgirêk bi diyalogê bên çareserkirin." Özçelîk di berdewamiya şiroveyên xwe de bertekek dijwar li hember gotinên Waliyê Kerkûkê Necmetîn Kerîm nîşan da û ragihand ku ji Mela Mistefa Barzanî û vir ve kurd ji bo statuya Kerkûkê ditêkoşin. Heke kurdan dest ji Kerkûkê berda bûya niha beriya salan Kurdistan ava bibû. Kurdan her tim gotiye: 'Kerkûk dilê Kurdistanê ye.' Em wek Partiya Azadiya Kurdistanê şiroveyên Kerîm qebûl nakin. Diyarkirina statuya Kerkûkê ne heddê tu kesî ye. Kerkûk a kurdan e û divê bi ser Kurdistanê ve bê girêdan."

**Serokê PDK-T'ê Mehmet Emîn Kardaş: Divê zerar negihije yekîtiyê**

Serokê Giştî yê Partiya Demokrata Kurdistanê ya Tirkiyê (PDK-T) Mehmet Emîn Kardaş jî diyar kir ku pêkhatinên siyasî yên li RHK'ê sedemê metirsiyê ne û divê hevpeymana di navbera YNK-Goranê de, ya li Silêmaniyê hatiye îmzekirin zerarê nede yekîtiya kurdan. Kardaş got ku KDP-T her tim bangewaziya yekîtiyê li RHK'ê, Rojhilata Kurdistanê û partiyên siyasî yên Rojava dike û van bangwaziyên xwe dubare dike. Ew hêvî dike ku dê partiyên siyasî yên RHK'ê bi riya yekîtiya netewî dê bikaribin qeyranan çareser bikin. Kardaş diyar kir nerînên xwe wiha anî ziman: "Serokê RHK'ê Barzanî ji bo azadiyê pêngavan diavêje. Divê YNK û Goran vê çendê bibînin. Heke hevpeyman li hember partiyeke siyasî be dê destê kurdan li Iraqê teng bibe. Dê têkoşîna li hember DAÎŞ'ê zeîf bibe. Divê pêngavên dijî yekîtiyê neyên avêtin."

**Cihgirê Serokê HAK-PAR'ê Latif Epözdemir: Divê îstîqrara siyasî bê parastin**

Cihgirê Serokê Giştî yê Partiya Maf û Azadiyê (HAK-PAR) Latif Epözdemir jî got ku: "Dê hevpeymana YNK û Goranê nêzîkî yek bike, her du partî ji xwe ji heman kîtleyê rayan distînin û xwediyên heman xetên siyasî ne. Divê tevgerên YNK û Goran nirxên netewî yên li RHK'ê biparêzin. Epözdemir li hember gotinên Waliyê Kerkûkê Necmetîn Kerîm ku digot: Em Kerkûkê bi ser Kurdistanê ve girê nadin" bertekek dijwar nîşan da û got: "Ev gotinên Waliyê Kerkûkê Kerîmî ne li gor qanûnan in ne jî li gor rewşa sosyolojîk ya nifûsa Kerkûkê ne. Bi bûyerên dîrokî ev diyar e. Kerkûk bajarekî kurdan e. Destûra Iraqê ev pejirandiye. Ev gotin ne heddê Waliyê Kerkûkê ye. Kerkûk dilê Kurdistanê ye û dê wisa jî bimîne."

**Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek: Kerîm têkoşîna kurdan ya dîrokî nabîne**

Serokê Giştî yê Partiya Azadî û Sosyalîzmê (ÖSP) Sinan Çiftyürek derbarê hevpeymana YNK-Goran û daxuyaniyên Kerîm de wiha axivî: "Îhtîmaleke mezin Îran aliyekê hevpeymana YNK-Goranê ye û faaliyetên Goran yên siyasî sedemê metirsiyekê ne. Lîderê Tevgera Goran di salên 2000'î de bi daxwaza Îranê ji YNK'ê cuda bûye û niha jî dîsa bi daxwaza Îranê li gel YNK'ê peymana yekîtiyê îmze dike."

Çiftyürek derbarê gotinên Waliyê Kerkûkê Kerîmî yên derbarê statuya Kerkûkê de ku piştî îmzekirina hevpeymanê hatibûn serfkirin wiha got: "Em nizanin gelo Necmetîn Kerîm nûnerê kurdan yan yê Îranê ye? Heke Kerîm kurdan temsîl dike divê ji bo girêdana Kerkûkê bi ser Kurdistanê ve têbikoşe. Heke temsîlkarê Îranê be ji xwe ev gotinên wî gelek normal in. Têkoşîna kurdan a dîrokî çawa nayê dîtin..."

**Mebûsê HDP'ê İmam Taşçıer: Divê yekîtiya netewî pêk bê**

Parlementerê HDP'ê yê Diyarbekirê İmam Taşçıer jî got ku di pêvajoya dewletbûnê ya RHK'ê de hevpeymana partiyên siyasî YNK û Goran divê bibe pêngava yekem ya yekîtiya netewî. Taşçıer wiha axivî: "Divê PDK û partiyên Îslamî jî tevlî hevpeymana yekîtiya netewî û siyasî ya her du aliyan bibin. Dê hewldanek li hember yekîtiya wan bibe hezîmetek. Divê her du alî ji gotinên ku zerarê bidin îstîqrara siyasî dûr bikevin. Ji bo referandumê amadekarî tên kirin. Ji bo serxwebûnê divê yekîtî pêk bê. Divê pirsgirêkên Goran û YNK li gel PDK'ê yan jî li gel partiyên din nebin."

**Rêvebirê PDK-Bakûr Mela Arif: Divê her du lay di nava diyalogê de bin**

Endamê Desteya Rêveberiya PDK-Bakûr Mela Arif jî derbarê hevpeymana YNK-Goran'ê de wiha axivî: "Rêkeftina YNK'ê û Goran metirsiyekê li ser îstîqrara siyasî pêk tîne û wekî tê îddîakirin yekîtiya siyasî pêk nayîne, ji bo qeyrana ekonomîk û siyasî jî nabe çareserî. Di demên dawî de YNK û Goran nêzîkî Îranê bûne û nêzîkatiya li gel Îranê ku li dijî serxwebûna RHK'ê ye gelekî watedar e. Divê YNK û Goran di bo parastina destkeftên RHK'ê bitêkoşin û ji bo parastina pergala li Kurdistanê di nava diyalogê de bin. Ne li hember hev, li hember êrîşkarin Kurdistanê divê yekîtiyê pêk bînin".

## Hikûmeta nû ya Tirkiyê

# Di ajandaya hikûmetê de çareserî heye?



Rêzan Karwan

AKP ku ji 3'ê Mijdara 2002'yan û vir ve Tirkiyê birêve dibe, hefteya derbasbûyî duyemîn kongreya xwe ya awarte lidar xist û di kongrê de li şûna Ahmet Davutoğlu ku nabûbû namzet, wezîr Binali Yıldırım wek Serokê AKP'ê û Serokwezîrê Tirkiyê hat hilbijartin. Her wiha di rêveberiya AKP'ê de guhertinên girîng çêbûn û navên wek Numan Kurtulmuş, Yalçın Akdoğan, Süleyman Soylu, Recep Akdağ û Cemil Çiçek di rêveberiya nû de cih negirtin. Binali Yıldırım di axaftina xwe ya kongreyê de yên piştî wê de peyamên domandina şer da. Proseya aştiyê ku niha ne di rojevê de ye û gesedanên dawîn yên hikûmetê; parlamenterê AKP'ê yê berê Abdurrahman Kurt, Parlamenterê AKP'ê yê berê Mehmet Emin Dindar, Akdemîsyenê Vahap Coşkun û Cuma Çiçek ji BasNûçe'yê re şîrove kirin.

**Abdurrahman Kurt: Aktorê vê meselê Erdoğan e**

Parlamenterê Partiya Dad û Geşepêdanê (AKP) yê berê Abdurrahman Kurt di derbarê hikûmeta nû, proseya aştiyê ku niha hatiye rawestandin û geşedanên dawîn ji BasNûçe'yê re nirxand. Kurt dibêje ku proseya aştî an jî çareseriyê bi guhertina serokwezîr ve ne girêdayî ye û wiha pê de diçe: "Ev mijar ne bi guhertina serokwezîr ve girêdayî ye. Aktorê vê proseyê Serokkomar Recep Tayyip Erdoğan e." Kurt eşkere dike ku proseya aştiyê li ser sê lingan hatibû avakirin û wiha pênase kir ev her sê ling: "Bêdengbûna çekan ku êdî nekevin dewrê, paşvekirşandina hêzên çekdar û pêngavên demokratîkbûnê ku rewş aram û asayî bibe. Nêzîkatiya AK Partiyê bi vî awayî bû, lê belê mixabin rêxistinê gavên ku pevçûnan kurtir dikin avêtin. Qesta me ya ji proseya aştiyê danîn û bêdengbûna çekan e. Rewşa Rojava, Sûriyê û rola Îran û Rûsyayê ku bûn asteng şer bidawî bibe girîng in. Rêxistin ket destê wan û pêngavên ku rewşê aloztir û kurtir dike hatin avêtin ji aliyê rêxistinê ve. Eger şer raweste û çek bêdeng bibin dibe ku proseyek bikeve rojevê, lê divê PKK dev ji şer berde û bi wê yekê re dibe pêngavên erênî bên avêtin."

**'Di bûyerên Geziyê de şikestinek çêbû'**

Kurt dibêje ku buyerên Geziyê rolek gelek ne baş lîst û wiha axivî: "Taybet piştî van buyeran şikestinek çêbû. Ji xwe paşvekişandina hêzên çekdar wê demê hat sekinandin. Wê demê bi wan buyeran xwestin AK Partiyê bêxin. Çi çêbû wê demê çêbû ku bandoreke pir neyînî li ser vê proseyê kir. Divê PKK bi biryar be ji bo rawestandina şer û bêdengkirina çekan û bi hêzên derve re tevnegere. Divê ev şere jî bê sekinandin." Kurt li ser mixatabiyê jî got, "Di mijara dawîanîna şer de, ew kes mixatab in ku ew ên di destê wan de çek hene. Lê ji bo çareserkirina arîşeya kurd mixatab hemû aliyên civata kurdan e."

**Vahap Coşkun: Ev polîtîka ya AK Partiyê ye**

Akademîsyen Vahap Coşkun di derbarê hikûmeta nû û rola wê ya di meseleya kurd de ji BasNûçe'yê re axivî û got, "Ev polîtîka AK Partiyê ye û mirov nikare bi serokwezîrê nû ve girê bide û binirxîne. Di vê qonaxê de merc guherîn. Niha şertê hikûmetê ew e ku PKK şer bide sekinandin û paşve vekişe. Proseya beriya niha ne bi vî awayî bû, di wir de rewşeke wisa hebû em baxivin paşê em ê mijara çekan baxivin. Lê niha hikumet ji bo destpêkirina proseyeke nû şertê berdana çekan datîne holê. Ev nêzîkatî û sekna dewletê nîşan dide. Ne girîng e ka kî serokwezîr e. Polîtîkaya dewletê bi vî rengî ye û tê ragihandin ku eger ev şert pêk neyê tu prose destpê nakin."

**'Dibe hin aktorên din bikevin dewrê'**

Coşkun di dirêjiya axaftina xwe de radgihîne ku guhertina hin navan di vê meselê de ne xwedî girîngiyek mezin e û wiha dibêje: "AK Partî an jî Serokkomar dema pêwîst bû hin navan derdixînin pêş û carna jî paşve dikşînin. Eger niha îradeyeke berdewamkirina proseya çareseriyê xwe bide der, ew ê bi van navan jî bimeşe û bi hikûmeta nû wê birêve biçe. Guhertina di nava AK Partiyê navxweyî ye û bi hevsengiyên partiyê re girêdayî ne." Akademîsyen Coşkun di axaftina xwe de anî ziman ku xendek, îlankirina rêveberiya yek alî û şerê gel rexne dike û wiha axivî: "Polîtîkaya niha ya tê meşandin tu sûdê nade kurdan. Zirara herî mezin kurdan dît û PKK jî bi îlankirina xwerêvebirinan, xendekan û şerê gel tu encaman bidest naxe. Ya rast ew e ku divê PKK vî şerî bide sekinandin û ji bo çareserkirina vê arîşeyê bi riyên siyasî hewl bide. Proseyek nû destpê bike jî wê aktor cihê bin û dibe hin aktorên din bikevin dewrê. Di mijara çekan de mixatab PKK ye, lê di warên din de mixatabên ji hev cuda hene. Dibe ku ev jî êdî weke mixatab werin girtin."

**Cuma Çiçek: Heta demekê ev rewş wê bidome**

Akademîsyen Cuma Çiçek jî li ser vê mijarê ji BasNûçe'yê re got ku niha nîşaneyek tune ye, em bibêjin ku wê dîsa ev prose destpê bike û axaftina xwe wiha didomîne: "Di bernamey hikûmeta nû de ji bo rawestandina vî şerî nîşaneyek tune ye. Berovajî destpêkirina proseyek nû, xuya dibe ku wê şer gurtir bibe." Çiçek li ser têkçûna proseyê dibêje: "Du sedemên vê yekê hebûn; Yek Rojava bû ku herdu aliyan jî weke xeta sor ev mesele binav kir û pêşketinek çênebû. Ya din jî hikûmetê bê merc dixwast ku PKK hêzên xwe vekişîne, lê belê PKK ev yek qebûl nekir û xwest ku ji bo çaksaziyan gav bavêje. Di hilweşîna proseyêkê de ev herdu sedem pir girîng bûn. Di proseya beriya niha de gelek arîşe ketin ser û bi daxuyaniya di derbarê Dolmabahçeyê de der bûn." Çiçek ji bo destpêkirina proseyek nû tîne ziman ku daxwazên herdu aliyan ji hev cuda ne û wiha dibêje: "Hikûmet bi awayekî mayînde bêdengbûna çekan dixwaze bê şert û merc, PKK jî vê yekê qebûl nake. Bêyî avêtina gavên demokratîkbûyînê xwasteka çek danînê wê neyê pejirandin ji aliyê PKK'ê ve ku em vê yekê dibînin. Ji ber wê yekê heta demekê ev rewş wê bidome û wisa xuya dike."

**'HDP bi tena serê xwe têrî vî karî nake'**

Akademisyen Çiçek di dirêjiya axftina xwe de amaje bi yekê dike ku divê bi aliyên civaka kurdanyên ji hev cuda jî wek parçeyekî vê meselê bên dîtin û maseya çareserkirinê berfireh bê girtin. Çiçek wiha daxive: "Dibe ku ji bo çek danînê Qendîl mixatab bê girtin, lê di aliyê siyasî de dibe ku HDP bi tena serê xwe têrî vî karî neke. Divê aliyekî kontrolê hebe û mekanîzmayek bê avakirin ku hesab ji herdu aliyan bipirse. Divê saziyên sivîl, saziyên din yên kurdan têkevin nav proseyê. Tevlîbûn aliyên cuda wê ji bo çareseriya vê arîşeyê baştir be. Lê teqez divê HDP jî di nav vê proseyê de bimîne ku dengê 5 milyon mirovan stendiye. Nabe ku HDP li derveyî vê proseyê bê hiştin. Her wiha divê opozîsyon jî cihê xwe bigire di vê pêvajoyê de. Beriya niha CHP nehat daxîlkirin û qet nebe divê ne li dij bin. Eger mekanîmayeke kontrolê were avakirin, wê biser bikeve."

**Mehmet Emin Dindar: Mesela kurd bi şer çareser nabe**

Parlamenterê AKP'ê yê Şirnexê yê Berê Mehmet Emin Dindar jî di axaftina xwe ya ligel rojnameya me de tîne ziman ku divê bi wan kesên ku kurdan temsîl dikin re ev mesele bê axaftin û wiha pêde diçe: "Niha şer heye. Di vê rewşê de prose nayê axaftin. Proseya beriya niha ji hêla aliyekê ve şaş hat fêmkirin. Hikûmet gelek erênî lê dinêrî. Dibe ku ev mesele were gotûbêjkirin û niqaşkirin, lê wê bi kurdan re ev bê kirin. Niha li navçeyên kurdan şer didome. Dema ev rewşa aloz bi dawî bû dibe ku bi saziyên sivîl yên civakî, pêşengên civakê, lîderên eşîran û aliyên civaka kurd yên din mixatab werin girtin. Ez bawer dikim ku proseyeke ku hemû kurdan digire nav xwe wê destpê bike. Ev mesele wê bi kurdan re were gotûbêjkirin ne bi rêxistinekê re. Her wiha ez bawer dikim ku wê pêngavên girîng û demokratîk di vî warî de bên avêtin. Em hemû jî dizanin ev mesele bi polîtîkayên ewlekariyê nayê çareserkirin. Bi kuştinê ev nayê çareserkirin."

**'Divê hemû aliyên civaka kurd mixatab bên girtin'**

Dindar dibêje ku gelê kurd dixwaze ev mesele bi rê û rêbazên siyasî çareser bibe û wiha dawî li gotinên xwe anî: "Em dibînin ku ev kurdan temsîl nakin. Kurdan li 33 bajaran ji bo ku siyaset bikeve dewrê dengên xwe dan. Lê mixabin guhdariya gel nekirin. Niha li Şirnex, Cizîr, Amed û bajarên din HDP rastî berteka kurdan tê. Dema em dibêjin ,siyaset' qesta me ne ew e ku kurd dev ji mafên xwe berdin. Kurd dev ji mafên xwe bernadin û wê mafên xwe biparêzin. Lê gelê kurd wê vê yekê ne bi çekan wê bi siyasetê bike. HDP kurdan hemûyan temsîl nake. Divê beşên civata kurd yên din jî di vê meselê de mixatab bên girtin. Her wiha divê HDP jî li derveyî vê proseyê nemîne û ew jî din av de cih bigire. Bi vî awayî ev mesele wê bigihije çareseriyê."



### Nûnerê RHK'ê li YE'yê Ajgeyî:

# Di warê dîplomasiyê de em serdemek zêrîn dijîn

"Di 6 mehên dawin de hatûçûna dîplomasiyê li ber çav e. Hejmarek zêde yên serok û berpirsên dewletan, berpirsên siyasî û leşkerî hatine Hewlêrê. Ez bawer nakim ku ev hinde hatûçûn li dewletek din ê navçeyê hebe. Hewlêr êdî li Rojhilata Navîn navendeke girîng û stratejîk ê pêwendiyan e ji bo van welatan."

**Zeyat Cebo**

Piştî destpêkirina şerê DAIŞ'ê û bi perçebûna xaka Iraqê, li herêmê girîngiya Hewlêrê zêdetir diyar bû. Ligel hebûna qeyrana darayî û pirsa ewlekariyê jî, gelek berpirs û karbidestên welatên cîhanê hatine Hewlêrê û ligel Rêveberiya HRK'ê (RHK) civiyan. Serkêşiya wan jî welatên Ewropî dikir. Nêzîkatiya welatên Ewropî bo HRK'ê, nêzîkbûna wan a ji bo pirsgirêkên Hewlêrê û herwiha helwesta wan a li hember rapirsiya serxwebûnê, mijarên girîng ên cihê meraqê ne. Derbarê van mijaran de Nûnerê RHK'ê li YE'yê Dîlawer Xalid Ajgeyî bo BasNûçe'yê re axivî. Ajgeyî tekez kir ku dewletên YE'yê (YE) RHK'ê weke hevpeymanên xwe dibînin û niha Kurdistan di warê dîplomasiyê de serdemeke zêrîn dijî.

**Nûneratiya HRK'ê li YE'yê kengî hate vekirin, pêwendiyên herdu aliyan bi fermî kengî destpê kir?**

Bi giştî li 14 welatên cîhanê nûneratiya HRK'ê heye. Li Ewropayê; li Brîtanya, Fransa, Almanya, Îspanya, Swêd, Polonya, Rûsya û herwiha li Holanda, Lûksembûrg û Belçîka heye. Li welatên din jî, li Amerîka, Îran û Awûstûralyayê nûnertî heye. Nûneratiya Holanda, Belçîka û Luksembûrg di heman demî de Nûnertiya Kurdistanê li YE'yê ye ku bi awayek fermî di sala 2008'ê de hate vekirin û ji aliyê welatên endam ve hate naskirin. Beriya wê jî nûnerê RHK'ê li Ewropa hebû ku bi navê RHK'ê ligel welatên endam hevdîtin dikirin. Lê bi taybet jî piştî sala 2011'ê bi temamî karî kar û bernameyên xwe bigehîne astek pêwîst û weke Nûneratiya Kurdistanê li YE'yê çalak bibe. Di sala 2013'ê de bi biryara Desteya Wezîran a HRK'ê û bi ferman û rênimayên Serokatiya Desteya Wezîran erk û rola nûneratiyê hatin diyar kirin. Nûneratiya Kurdistanê li YE bi girêdayî Fermangeha Pêwendiyên Derve yê Kurdistanê, li Ewropayê li gor nexşerêyekê bi armanca pêwendiyên siyasî û dîplomasî yê Kurdistanê û li ser hîmê berjewendiyên HRK'ê li gor nexşerêya jê re hatiye danîn, kar û çalakiyên xwe dike. Niha avahiya Nûneratiya Kurdistanê li Brûksela paytexta Belçîkayê ketiye rêza balyozxaneyên cîhanê û saziyên YE'yê. Ala Kurdistanê jî li kêleka ala welatên din ên cîhanê li ser avahiya nûneratiyê bilind dibe. Pêwendiyên dîplomatîk ên HRK'ê ya bi welatên cîhanê û sazî û dezgehên YE'yê li ser rêya vê nûneratiyê tên birêvebirin.

**YE'yê bi kîjan çavî temaşeyî HRK'ê dike, pêgeha Kurdistanê li YE çi ye?**

Nûneratiya HRK'ê li Ewropa, di heman demî de nûneratiya welatên Benelûksê an ku Luksemburg, Holanda û Belçîkayê ye. Saziyek fermî ye ku ji aliyê yekîtiyê ve hatiye naskirin. Li Parlamena Ewropayê, dema mijarên derbarê HRK'ê, pirsa kurd û Iraqê dibin rojev, em bi awayek fermî tên vexwendin û li civîn û rûniştinan de amade dibin. Di van rûniştinan de em peyama Kurdistanê radigehînin. Ji bo pêkanîna bernameyên çalakî û civînên xwe em ligel Parlamena YE'yê di nava hemahengiyekê de dikin. Koordînasyonek wiha di navbera me û parlamenê de heye. Herwiha, ligel şand û berpirsên YE'yê serdana Hewlêrê dikin û ligel berpirsên Kurdistanê rûdinin. Pêwendiyên HRK'ê bi taybet di van salên dawî de ligel welatên cîhanê û Ewropayê gelek pêşve çûye. Gelek welat dema peyamên xwe dişînin bo Kurdistanê, li ser nameyên xwe nûneratiya me weke "balyoz" binav dikin û herwiha weke balyozxaneya welatek serbixwe danûstandinê dikin. Herwiha Nûneratiya Kurdistanê li Ewropayê kariye lobiyek bi hêz ê kurdan ava bike. Di nava Parlamena Ewropayê de komek bi navê "Koma Dostaniya Kurdan" jî hatiye ava kirin.

**Kî yan jî kê ne dostên kurdan?**

Vê gavê kesên ku di nava vê komê de cîh digrin 30 endamên Parlamena Ewropayê ne û nûnerê 15 welatên cûda ne. Di nava vê komê de ji hemû fraksiyonên cûda yên endamên parlamenê cîh digrin, parlamenterên xrîstiyan demokrat, sosyal demokrat, sosyalîs, lîberal û herwiha konservatîf jî di nava Koma Dostên Kurdan de hene. Hemû endamên vê komê jî parlamenterên çalak, naskirî û xwedan gotin in. Dikarim bêjim ku vê komê kariye weke hevkarê Nûneratiya Kurdistanê, li Parlamena Yekitiya Ewropayê rolek girîng dilîze. Herwiha bi piştgiriya vê komê gelek mijarên hestyar ketine rojeva Yekitıya Ewropayê. Di heman demî de me kariye em bi rêya van rojevan jî daxwaz û peyamên xwe baştir bînin ziman. Gelek caran dema nûnertî civîn an jî dîbeytekê lidardixe, bi hevkariya Koma Dostên Kurdan, piştgirî û beşdarbûnek bihêz pêk bîne û daxwaziyên me bidest bixe.

**Di salên dawî de Hewlêr bûye navendek girîng ê dîplomasiya cîhanê. Berpirsê gelek welatên Ewropa jî tên û derbarê tekoşîna li dijî DAIŞ'ê û rewşa penaberan de peyama piştgiriyê didin RHK'ê. Lê di van mijaran de pêngavên berçav çi ne, nûnertî di van mijaran de çi kar û hewlekê dide?**

Dema di Tebaxa sala 2014'an de rêxistina DAIŞ'ê êrîş anî ser Kurdistanê, YE'yê gelek bi lez hate kete nava liv û tevgerê û zû biryar wergirtin. Wê demê ku havîn bû û piraniya berpirsên YE'yê di bêhnvedanê de bûn, ligel malbatên xwe li derve û di geştên xwe yên salane de bûn. Lê ji ber girîngiya HRK'ê û metirsiya rêxistina DAIŞ'ê, berpirsan geştên xwe birrîn û hatin li Brûkselê civînek awarte sazkirin. Di civînê de biryar hate girtin ku di şer de piştgiriyê bidin HRK'ê. Herwiha biryarek dîrokî hate girtin ku ew jî alîkariya leşkerî bo Hêzên Pêşmerge bû. Di encama vê biryarê de gelek welatan alîkariya leşkerî, çek û teqemenî şandine Kurdistanê, hindek ji wan welatan rawêjkarên leşkerî birêkirin û herwiha di nava Hevpeymaniya Navdewletî ya li Dijî DAIŞ'ê de cîh girtin da ku bi rêya esmanan û firokeyên xwe di şer de alîkariyê bidin Hêzên Pêşmerge. Ev tev jî pêngavên girîng bûn bo tekoşîna li dijî terorê. Weke tê zanîn YE'yê xwedan hêzek hevbeş ê leşkerî nîne û herwiha rêxistinek siyasî ye. Lê bi vê biryara xwe karî welatên endam hanbide bo alîkariya HRK'ê.

Herwiha mijarek girîng ê din jî, ligel şer hatina rêjeyek zêde yê penaberan bû. Weke tê zanîn li gor amarên fermî milyonek 800 hezar penaberan ji Sûriyê û Iraqê rû li HRK'ê kir û vê yekê jî barek giran ê aborî danî ser pişta Kurdistanê. Bi armanca alîkariya penaberan nûnertiya me ev mijar di gelek rûniştinan de anî rojevê. Li Brûkselê biryara alîkariyê derket. Di heman demî nûnerên welatan dema hatin Kurdistanê ev mijar hate gotûbêjkirin, soza alîkariyê ji wan hate girtin. Jixwe hejmarek welatan jî soza xwe bicîh anîn û alîkarî şandin bo penaberan. Mekanîzmaya YE'yê ne wisa ye ku di mijarên wiha de ew bixwe bê pêş ve û gavan biavêje. Bi taybet di mijara penaberan de ligel Neteweyên Yekbûyî (NY) tevdigere. Jixwe hemû endamên YE'yê di heman demî de endamên NY ne. Bi rêya saziyên NY alîkarî gihandine Kurdistanê.

**Parlamena YE'yê biryarek fermî da ji bo alîkariya darayî. Naveroka vê biryarê çi bû?**

HRK'ê di warê darayî û aborî de qeyranek cidî dijî. Ji aliyekê ve lêçûnên şerê DAIŞ'ê, ji aliyekê ve gemaroya aborî û birîna bûdceya herêmê ji aliyê Bexdayê ve û herwiha daketina nirxê petrolê, hêlişt ku barê Hewlêrê giran bibe. Ji bo derbaskirina vê qeyrana Kurdistan bi awayek fermî daxwaza alîkariyê ji YE'yê kiriye. Serokê HRK'ê Mesûd Barzanî destpêka salê heryek ji bo Serokê Komîsyona Ewropa û Serokê Konseya Ewropa du name şandin. Weke nûneratiya Kurdistanê me jî bi rêya lobiya xwe kar ji bo pêkanîna pêwîstiyên van nameyan kir





û hevdîtin pêk anî. Herwiha Koma Dostên Kurdan li ser vê binemayê nameyek bo Berpirsa Karên Derve û Ewlekariyê ya YE'yê Federica Mogherînî şand û bi awayek fermî daxwaza alîkariya aborî bo HRK'ê kir. Bêguman mijara alîkariya darayî jî bi qasî ya leşkerî bo Hewlêrê girîng e bo bikare di nav şerê DAIŞ'ê de xwe li ser lingan bigre. Li ser vê yekê wezîrên karê derve yê YE'yê di civîneke de biryar dan ku alîkariya darayî bidin Kurdistanê. Weke tê zanîn ku hindek welatên Ewropî jî di nava qeyrana aborî de ne. Bi roxmê vê jî, biryar dan ku ev biryara Parlamena Yekîtiya Ewropayê alîkariya dîrokî pir girîng e. Di biryara xwe de piştgirî dane Banka Navdeletî û Sindûqa Pare ya Navdewletî (ÎMF) da ku deyn bidin Iraqê û di nav de jî pişka HRK'ê bê diyarkirin. Ev e biryarek girîng bû. Wê ji bo wergirtina alîkariyê hindek karên birokratîk bên kirin. Lê ev biryar ji aliyê siyasî ve jî destkeftek mezin û serkeftinek dîplomasî yê baş e bo HRK'ê.

**Di serî de Şengal, ji bo avakirina harêmên di bin dagirkeriyê de hatine rizgarkirin, çi dîplomasiyek tê kirin?**

Beriya hemû tiştan me kar ji bo wê yekê kir ku YE komkujiya DAIŞ'ê ya li dijî kurdên êzdî weke "jenosîd" nas bike. Parlamena YE'yê di civîna xwe ya li Strasbourgê de, bi biryara jimare 1490 a 2016'ê bi piraniya dengan ev yek qebûl kir û komkujiya li dijî êzdiyan weke "jenosîd" nas kir. Ev yek jî di warê siyasî û manewî de, destkeftek baş e bo Kurdistanê. Di nava daxwazên me de, ji bo ji nû ve avadankirina herêmên ji aliyê Hêzên Pêşmerge ve hatine rizgarkirin, bi taybet herêmên êzdiyan û xrîstiyanan, alîkarî jî hebûye. Weke tê zanîn piraniya xelkê koçber ji ber malên wan, navçe û gundên wan nehatine avadankirin, nikarin vegerin cihê xwe. Herwiha, çi qas avadankirin dereng dikeve, ew hinde hêviya xelkê van navçeyan bo paşerojê kêm dibe. Alîkariya derve jî dihêle ku ew hest bi wê yekê bikin ku cîhan li pişt wan e. Welatên endam di vê mijarê de jî soza alîkariyê dane Kurdistanê. Ji bo vê yekê pêwîstî bi avakirina mekanîzmayekê heye. Herwiha divê ev herêm jî ji aliyê ewlekariyê ve, baş bên parastin ku ev jê erkê Kurdistanê ye. Gefên terorê li ser van navçeyan nemîne da ku aliyên pêwendîdar jî bikarin gavên berçav biavêjin.

**Gelo niha welatên YE ji ber rewşa navçeyê xwe wiha nêzîkê HRK'ê dikin. An ku ev germahiya pêwendiyan tiştek konkjuktûrî ye an jî stratejîk e?**

Welatên Ewropa pir girîngî didin HRK'ê. Ev girîngî ji ber rewşa navçeyê û herwiha pêgeha stratejîk a HRK'ê ye. Tenê 6 mehên dawiyê em binerên, hatin û çûna dîplomasiyê li ber çav e. Hejmarek zêde yên serok û berpirsên dewletan, berpirsên siyasî û leşkerî hatine Hewlêrê. Ez bawer nakim ku ev hinde hatin û çûn li dewletek din ê navçeyê hebe. Hewlêr êdî li Rojhilata Navîn navendek girîng û stratejîk ê pêwendiyan e ji bo van welatan. Her wiha hemû welat jî vê dibînin ku di warê çarenivîsa navçeyê de wê Hewlêr di paşerojê de jî bibe navendek sereke yê biryardanê. Bêguman welatên Ewropayê dema ji bo sazkirina pêwendiyan gavekê diavêjin, planên demkî datînin lê bi demdirêjî hesaban dikin. Ji bo em bizanin ka nêzîkatiya wan stratejîk e yan demkî ye, divê em li helwesta wan binerin. Di van salên dawî de jî derket holê ku di nava rewşa aloz a Iraq û Sûriyê de, HRK'ê karî bibe penagehek aram. Ligel vê yekê, Pêşmerge karîn bibin bendek ji bo rawestandin û têkbirina terorê. Jiber vê yekê jî gelek baweriya wan bi HRK'ê tê û wê yekê dibînin ku Hewlêr dikare bo wan bibe hevpeymanek bawerpêkirî. Jixwe li ser vê yekê îro alîkariyê didin HRK'ê. Ew dixwazin pêwendiyên wan li gel Hewlêrê baş be û Hewlêr jî di navçeyê de bibe xwedan hêzek diyar. Ji ber ku heger Hewlêr di warê ewekariyê de aram be, di warê aborî de bi seqamgîr be, dikare di warê ewlekarî, siyasî û aborî de li Rojhilata Navîn bibe balansek di nava hêzan de. Kurdistan bi çavkaniyên xwe yên ser erd û bin erd ve welatek gelek dewlemend e. Ji bo navçeyê û welatên Ewropa jî dikare bibe çavkaniyek girîng ê bidestxistina wize. Ligel van xisletan hemûyan, Kurdistan di warê civakî de jî weke "giravek mînak ê pêkvejiyan, demokrasî û aştiyê ye" ku ji bo Ewropiyan ev jî girîng e. Mijara pêkvejiyana cudahiyan faktêrek din e ku welatên din girîngiyê bidin HRK'ê. Ew jî dibînin ku mafê pêkheteyan û cûdahiyan tê parastin. Di warê demokrasiyê de jî rêveberiyê de li gor kotayan nûnertiya wan heye. Herwiha dema ji ber şer û karesatan direvin jî, piraniya van pêkheteyên Iraq û navçeyê berê xwe didin HRK'ê. Bi kurtî ew nirxên demokrasiyê ku Ewropa girîngiyê dide, dibînin ku li Kurdistanê hatiye cîbicîkirin. Jiber vê yekê jî dibêjin ku HRK'ê di warê hizra demokrasiyê de jî nêzîkê wan e. Ji lewra welatên Ewropî dixwazin pêwendiyên stratejîk ligel Hewlêrê daynin. Ligel serdanên xwe, hemû welat jî dixwazin di serî de Serokê Kurdistanê Mesûd Barzanî û berpirsên din ên Kurdistanê jî serdana welatên wan bikin. Ez dikarim bi rehetî bêjim ku HRK'ê di warê dîplomasiyê de, di serdemek zêrîn dijî.

> "Ewropî dibînin ku nirxên demokrasiyê li Kurdistanê hatiye cîbicîkirin. HRK di warê hizra demokrasiyê de jî nêzîkê wan e. Lewra Ewropî dixwazin pêwendiyên stratejîk ligel Hewlêrê deynin. Ez dikarim bi rehetî bêjim ku HRK'ê di warê dîplomasiyê de, serdemek zêrîn dijî."



**Niha li HRK'ê rapirsiya serxwebûnê di rojevê de ye. Li hember serxwebûna Kurdistanê helwesta welatên Ewropî çi ye? Gelo hûn çi amadekariyekê di warê dîplomatîk de ji bo rapirsiya serxwebûnê dikin?**

Mijara rapirsiya serxwebûna Kurdistanê yek ji karê me yê ciddî û sereke ye. Bêguman eve pirsek gelek girîng e û ji bo paşeroja gelê kurd çarenivîsaz e. Em ji niha ve hewl didin ku welatên Ewropî ji bo rapirsiya serxwebûnê amade bikin da ku helwestek neyînî li hember biryara gelê me negrin û pişgirî bidin. Herwiha em hewldidin ji ezmûna welatên ku bi rapirsiyê serxwebûna xwe ragihandine, sûdê werbigrin. Li ser vê yekê hevdîtinên me hene. Me bi awayek fermî ji parlamenter û komên nava Parlamena YE'yê jî daxwaz kiriye ku di dema encamdana rapirsiyê de bên û çavdêriyê bikin. Li gel van, biryar heye ku em di nav Parlamena YE'yê de konferansek berfereh pêk bînin û pirsa serxwebûna Başûrê Kurdistanê tê de bê guftûgokirin. Armanc ew e ku berpirsên Kurdistanê, yên Ewropa û herwiha berpirsên erebên sûnne û şîe jî di konferansê de amade bin, vê mijarê binirxînin. Bi vî awayî em dixwazin ku ew jî bibînin ku weke prensîbek demokrasiyê, kurd dixwazin bi rêya guftûgoyan, bi aştiyane û danûstandinên siyasî, mijara serxwebûna Kurdistanê çareser bikin. Di vî mijarê de dikarim bêjim bi giştî him di nava gel û hin jî di nava berpirsên Ewropî de me piştgiriyek baş bidestxistiye. Piraniya wan jî dibêjin ku mafê kurdan e çarenivîsa xwe diyar bikin. Weke giştî ji sedî yek jî, egera têkçûna ewlekarî û seqamgîriya welatekê hebe, welatên Ewropî piştgirî nadin guhertinan. Lê guhertin ji bo pitewkirina ewlekarî û seqamgiriyê jî be, ji bo berjewendiyên xwe piştgirî dikin.

Em dikarin bêjin ku kurd îro tenê nînin, dost û hevpeymanên kurdan zêde bûne. Ewropa jî Kurdistanê weke hevpeymanek xwe dibîne û ev e rastiyek e ku me ji devê gelek berpirsên pilebilind ê ewropî bîhîstiye. Herwiha dibêjin, "Tenê ne çiya, êdî em jî dostê kurdan in" û ji me dixwazin ku em vê peyamê bigehînin gelê xwe jî. Ji me daxwaz dikin ku dema ragihandina serxwebûnê de em wan jî vexwînin da ku di wê roja dîrokî de li gel me bin, ji ber ew roj rojek bi wate ye ku neteweyek bindest weke hemû neteweyên din ên cîhanê dibe xwedanê serxwebûn û azadiya xwe.

## Fermandarê Mîhwera Mexmûrê Sîrwan Barzanî:

# DAIŞ plana têkbirina destkeftiyên kurd bû

**Siwar Bedirxan**

Li gor zanyariyên Wezareta Pêşmergeyên bi BasNûçe'yê re parvekiriye tenê li dorûbera Şengalê û li Mûsilê û li hin gundewarên Kerkûkê di destê DAIŞ'ê de mane û Pêşmerge amadekarî dikin ku wan gundeweran jî ji destê DAIŞ'ê rizgar bikin.

Li aliyê din herçend di destpêka şer de çek û cebxaneya giran di destê Pêşmergeyan tunebe û DAIŞ'ê hin herêmên kurdan dagirkiribe jî tê zanîn ku hêzên kurd bi hevkariya Hevpeymaniya Navdewletî li hember DAIŞ'ê serkeftî bûne. Fermandarê Mîhwera Mexmûrê Sîrwan Barzanî, geşedanên şerê DAIŞ'ê, ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Sîrwan Barzanî eşkere kir ku DAIŞ planeke têkbirina destkeftiyên Kurdistanê bû û gelek hêzan dixwest ji ser DAIŞ'ê otorîteya Kurdistanê jinav bibin, lêbelê bi xweragiriya Pêşmergeyan ew bername û planên têkbirina Kurdistanê serkeftî nebûne.

Fermandar Barzanî eşkere dike ku wan heta niha wan gelek serkeftin di şer tomarkiriye û Pêşmerge amade ne DAIŞ'ê bi temamî ji holê rakin. Herwiha Fermandarê Mîhwera Mexmûrê, daxuyand ku bi piştevaniya hevpeymaniyê wan derbeyên giran li DAIŞ'ê daye û eger hemagengî bê duristkirin ew amadene DAIŞ'ê ji Mûsilê jî derxînin. Barzanî destnîşanî bi Operasyona Mûsilê jî kir û wiha got: "Artêşa Iraqê dibêje, 'min dest bi operasyonê kir' leşkerên Iraqê hatin dorûbera Mexmûrê, lê ew nedikaribûn pêşve biçin. Di operasyona Nîsanê de 3 gund ji destê DAIŞ'ê derxistin nikarîbûn bigihên gundê 4'an. Pêşmerge amade ye DAIŞ'ê ji Mûsilê bistîne. Dorûbera Mûsilê hemû di destê Pêşmergeyan de ye."

**"Baweriya xelkê bi Artêşa Iraqê nemaye"**

Di berdewamiya axaftina xwe jî de Barzanî balkişand ser derengketina Operasyona Mûsilê jî û amaje bi wê yekê kir ku Artêşa Iraqê amade nîn e ku beşdarî operasyonê bibe û beşdariya milîseyên şîe yên Heşdî Şabî jî ew ê nakokiyên mezhebî xurttir bike. Barzanî li aliyê din da zanîn ku eger ferman bê dayîn ew amade ne DAIŞ'ê ji Mûsilê jî derxin. Barzanî destnîşanî bi danûstendinên li ser Operasyona Mûsilê jî kir û wiha berdewam kir: " Em bi xwe leşker in, Pêşmerge ne. Wezareta Pêşmerge û Cenabê Serok Mesûd Barzanî ji me re çi bêje em ê wê bikin. Mûsil bajarekî erebnişîn e. Lêbelê li dorûbera bajêr, pêkhateyên din jî hene. Ew hemû pêkhate niha li Kurdistanê bûne penaber. Li dorûbera Hemdaniyê, Qereqoçanê, Nînovayê gelek pêkhate hene. Em ê wan deveran rizgar bikin. Pêkhateyên li van herêman jî daxwaza wê yekê dikin. Ew jî dibêjin 'eger Pêşmerge li herêmê nebe em venegerin. 'Divê Pêşmerge parastina xelkê wê herêmê bike. Baweriya xelkê bi Artêşa Iraqê tuneye. Dizanin ku Pêşmerge parastina hemû hemwelatiyên Iraqê dike."

Li aliyê din Fermandar Barzanî da zanîn ku şerê li dijî DAIŞ'ê li 8 mîhweran hatiye dabeşkirin û tenê ji sedî 3 xaka Kurdistanê di destê DAIŞ'ê de maye. Barzanî bal kişand ser şerê Pêşmergeyan ê li mîhweran jî û wiha axivî: "Li her mîhwerê çend gund di destê DAIŞ'ê de mane. Li hin mîhweran 5, li hin mîhweran 3 û li hin mîhweran jî 6-7 gund di destê DAIŞ'ê de mane. Bi giştî DAIŞ tûşî şikestinê bûye. Me serkeftinên mezin li hember DAIŞ'ê tomar kirine. Moralên Pêşmerge bilind e. Pêşmerge dikare herêm û gundên din jî ji destê DAIŞ'ê derxe û Kurdistan bigihê sînorê xwe yê sirûştî."

**"Em li penaberan xwedî derketin"**

Herwiha fermandar Barzanî hejmara penaberên ji ber şerê DAIŞ'ê hatine Kurdistanê û li Kurdistanê bi cihbûne jî bi bîr xist û wiha axivî: "Teqrîbên 2 milyon 400 hezar aware bi ser me de hatin. Penaber ji ber şerê DAIŞ'ê direviyan. Ev arîşeyeke mezin e. Hem arîşeyeke siyasî, hem darayî, hem jî aborî ye. Dema herêmên wan rizgarbûn ew ê vegerin herêmên xwe. Em niha hemû pêdawîstiyên wan dabîn dikin. Herçend rewşa me ne baş be, Iraq mûçeya me neşîne, bihayê neftê ketibe jî em nahêlin penaber perîşan bibin û nerazîbin. Dema me herêmên wan rizgar kir û aramî li bajarên wan peyda bû ew ê herin."

Barzanî destnîşanî bi rewşa darayî ya RHK'ê jî kir û derbirî ku ew ê îcaze nedin ku eware tûş, wêraniyê bibin û heta ku herêmên wan neyên azadkirin ew ê li penaberan miqate bin.

**"Madeya 140'î nema ye"**

Sîrwan Barzanî xala 140'î ya Destûra Iraqê jî bi bîrx xist û tekez kir ku herçend Bexdayê referandûm nekir û xwe dûrî refardûmê xistibe jî Pêşmergeyan ew xala bi awayekî filî ji holê rakir. Barzanî da zanîn ku Artêşa Iraqê di destpêka şerê DAIŞ'ê de ne bi tenê xaka Iraqê û Kurdistanê, çekên xwe jî radestî DAIŞ'ê kirine û wiha got: "Madeya 140'î nema ye. Me bi xwîne xwe bihost bi bihost rizgar kir. Em careke din vê axa xwe nadin tu kesî. Di her bihosteke axa me de xwîna şehîdan heye. Bexdayê biryarên destûrê bi cih neanî. Niha hemû cihan dengê me dibihîze û pişetavaniya me dike. Teknolojî ne weke berê ye. Dengê me diçe cihanê. Çavê me ne li dagirkeriyê ye. Em tenê dixwazin di axa xwe de azad bijîn û bibin serwerê axa xwe. Li dora me gundên ereban hene. Pêkhateyên din hene hemû azad in. Madeya 140'î çû. Ew ê qedera herêmên 140'î jî refarandûm diyar bike. Xelkê Kurdistanê xwestin bi ser Kurdistanê ve bin ew ê biryarê bidin. Eger xwestin bi ser Iraqê û komên selefî bimînin jî ew dizanin. Ew ê millet biryarê bide."

**"Xelkê Kerkûkê dixwazin bi ser Kurdistanê ve bin"**

Fermandarê Mîhwera Mexmûrê Barzanî, din bal kişand ser nîqaşên siberoja Kerkûkê jî û da zanîn ku aramiyek li Kerkûkê peydabûye û xelkê Kerkûkê dixwaze bi ser Kurdistanê ve be. Barzanî di berdewamiya axaftina xwe de ragihand ku ligel Pêşmerge di 1005 kîlometreyan de şerê DAIŞ'ê dike jî ew aramiya bajarên Kurdistanê diparêzin û bi şev û roj parastina xelkê herêmê dikin. Barzanî tekez kir ku aramiya niha ya li Kerkûkê heye tu caran li Kerkûkê peyda nebûye û xelkê Kerkûkê ji hebûna Asayîşa Herêma Kurdistanê, ji hebûna Pêşmergeyên Kurdistanê gelekî kêfxweş e û wiha pê de çû: "Me heta niha nehiştiye xetere bê ser xelkê me. Di dema Seddam jî de û piştî wî jî aramî li Kerkûkê tunebû. Bi hatina Pêşmergeyan û asayîşê Kerkûk bûye cihekî aram. Xelkê wê dixwazin bi ser Kurdistanê ve bin. Ew naxwazin careke din Iraq li wir hukim bike."

**"Iraqeke yekgirtî û federal êdî ne mimkûn e"**

Barzanî li ser peywendiyên Bexda û Hewlêrê jî rawestiya û da zanîn ku ne Iraqeke yekgirtî bûye çare û ne jî Iraqa federal. Barzanî daxuyand ku ji destpêka duristbûna Iraqê heta niha gelê kurd hatiye qetilkirin ew ê dawiyê li vê yekê bînin. Barzanî amaje bi wê yekê kir ku hewceye dewletên rojava, piştî vê qonaxê Iraqeke yekgirtî û federal zal nekin lewre dawî li vê fikrê hatiye. Barzanî, da zanîn ku ne baweriya siyasetmedarên kurdan bi Iraqê ve heye û ne jî baweriya xelkê kurd. Barzanî destnîşanî bi qeyrana Bexda û Hewlêrê kir û wiha berdewam kir: "Destûra me çêbû. Li gor destûrê Pêşmerge beşek in ji Artêşa Iraqê, lêbelê Iraqê heta niha ji me re fîşekek jî neşandiye. Heta niha Iraqê dînarek jî neşandiye. Mûçeya Hewlêrê nayê şandin. Em ê hêj bi Iraqê re li ser çi rêkbikevin? Ya baş ew e em çarenivsîa xwe diyar bikin. Bi peymana Sykes – Picotê bi qedera milletê me lîstin, ew peyman bi dawî bûn. Hin xeletiyên dîrokî pêk hatibûn. Divê ew neyên dûbare kirin."

**"Pêwîst e ji me re çek bên şandin"**

Barzanî di dawiya axaftina xwe de bal kişand ser serdanên lîjneyên Pêşmergeyan ya ji bo welatên derve û alîkariya Pêşmergeyan jî. Barzanî eşkere kir ku heta niha Hevpeymaniya Navdewletî gelekî alîkarî ji wan re şandine lêbelê ew kêm in û divê çekên baştir ji Pêşmergeyan re bê şandin. Herwiha Barzanî eşkere kir ku divê welatên alîkariya Kurdistanê dikin yekser çekan ji Kurdistanê re bişînin lewre çekên ku ji bo wan tên û diçin Bexdayê nagihêjên wan û ew bi kêr nayên. Barzanî eşkere kir ku Rûsyayê ji wan re hinek çek şandine Bexdayê û Bexdayê ew çek dîsa li Rûsyayê vegerandiye. Barzanî axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Pêwîst e hevpeymanên me jî alîkariya me bikin. Çekan ji me re bişînin. Ne ji Bexdayê re. Rûsyayê hinek çek ji me re şandibûn..



Sîrwan Barzanî ragihand ku DAIŞ plan û bernameyek bû ji bo bi dawîbûna destkeftiyên Kurdistanê û Pêşmergeyan ew plan û bername ji nav biriye. Herwiha Pêşmergeyan heta niha serkeftinên mezin li hember DAIŞ'ê bi dest xistine û ew dikarin DAIŞ'ê ji Mûsilê jî derxînin.



# KADEP û PDK-T biryara yekîtiyê dan

Şakir Abdülsettar




Danûstendinên zêdetir ji 8 meha di navbera KADEP û PDK-T'yê yên yekitiyê bi encam bûn. Nûnerên partiyan beriya demekê berê daxundibûn ku ew ê yekîtiyê ava bikin di 27'ê mehê de bi merasîmekê û bi awayekî fermî ragihadin ku ew ê êdî di bin sîwana PDK-T'yê de siyaseta xwe bidomînin.

Hewldanên Însiyatifa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê bi encam bûn. Beriya bi 8 mehan gelek rewşenbîr, siyasetmedarên kurd ji bo hevgirtina partiyên Kurdistanî yên li Bakurê Kurdistanê dest bi danûstendinan kiribûn û serdana hemû partiyan kiribûn. Herwiha hat zanîn ku Însiyatîfa Yekitiya Partiya Demokrata Kurdistanê di encama danûstendin û diyaloga bi partiyên Kurdistanî yên Bakurê Kurdistanê re Partiya Demokrasiya Beşdar (KADEP) û Partiya Demokrata Kurdistana Tirkiyê (PDK-T) gihandiye hev da ku herdu partî bibin yek û bi navê PDK-T'yê li Bakurê Kurdistanê bi awayekî xurt siyasetê bikin.

Bi beşdariya gelek siyasetmedar û rewşenbîrên ji 4 parçeyen Kurdistanê, di 27'ê Gulanê de resepsiyonek ji aliyê rêvebirên PDK-T û KADEP'ê hat lidarxistin û ji herçar parçeyên Kurdistanê siyasetmedar û nûnerên partiyên siyasî beşdarî resepsiyonê bûn. Rêvebirên KADEP û PDK-T'yê Berpirsiyarê Peywendiyên Navxweyî yê Partiya Demokrata Kurdistanê (PDK) û Parlementerê PDK'ê li Parlementoya Iraqê Ahmed Kanî, Endamê Polîtbûroya PDK'ê Elî Ewnî, Parlementerê PDK'ê Xoşnaw Omîd, Sekreterê Giştî yê Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK) Alî Qazî, Nûnerê PDK'ê yê Enqerê Omar Mîranî, Endamê ENKS'ê Abdulsetar Temo, Serokê Giştî yê PSK'ê Mesût Tek, Sekreterê Giştî yê Tevgera Sitki Zilan rêvebirên Partiya Azadiya Kurdistanê (PAK), HAK–PAR'ê ÖSP'ê yên Amedê û hunermend Nilüfer Akbal û Beytocan li gel çendîn şexsiyetên naskirî di resepsiyonê de amade bûn.

Serokê Giştî yê PDK-T'yê Mehmet Emin Kardaş, di resepsiyonê de axivî û tekez kir ku PDK-T berdewama rêbaza Melle Mistefa Barzanî ye. Herwiha Kardaş ragihand ku bı hevgirtin û yekgirtinê ew ê gelekî bi hêz bibin. Kardaş bal kişand ser geşedandên li Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) jî û da zanîn ku divê hemû kurd piştevaniya referandûma serxwebûnê bikin. Kardaş wiha berdewam kir: "Meşa me ya bihev re ew ê me xurttir bike. Bernameya partiya me ya hemû dildarên Kurdistanê ye. Em amadene bi awayekî xurt siyaseta xwe bidomînin. Di destpêka danîna partiyê de me gelekî êş û azar dîtin. Gelek astengî ji me re desrxistin. Lê me berdewam kir û em gihiştin vê astê. Em sipasiya hemû kurdan dikin ku li riya Barzanî xwedî derdikevin û xizmetê ji Kurdistanê re dikin.

**Serokê Giştî yê KADEP'ê Lütfü Kıvanç: Em ê bi vê yekitiyê bihêz bibin**

Li aliyê din Serokê Giştî yê KADEP'ê Lütfi Kıvanç, jî ji BasNûçe'yê re axivî û di derbarê yekgirtina partiyan de nerînên xwe anî ziman. Kivanç, eşkere kir ku ew ê di bin banê PDK-T'yê de bi awayekî aktîf doza Kurdistanên bidomînin û ew ê êdî nûnertiya kurdan bikin. Kivanç tekez kir ku yekgirtin û hevgirtina partiyên siyasî yên kurd ew ê destkeftiyên kurdan biparêze û ew ê siyaseta kurdan xurtir bike. Kivan di berdewamiya axaftina xwe jî de, amaje li ser wê yekê jî kir ku ew vê hevgirtina partiyên kurdan weke destpêkeke yekitiya partiyên Kurdistanî dibînin û wiha axivî: "Bila ev yekîtî li kurdan li siyaseta kurdan pîroz be. Em di wê baweriyê de ne ku em ê ji vê hevgirtinê sûdewerbigrin. Dostên me jî em bi tenê nehiştin di rojeke wisa de. Em sipasiya hemû kurdan dikin."

**Nûnerê PDK-T'yê li Hewlêrê Rojhat Amedî: Pêwîstiya me bi yekîtiyê heye**

Nûnerê PDK-T'yê yê Hewlêrê Rojhat Amedî jî di resepsiyonê de axaftinek kir û ragihand ku hevgirtin û yekgirtina aliyên siyasî di berjewendiya siyaseta kurd de ye. Amedî anî ziman ku îro Kurdistan di qonaxeke dijwar de derbas dibe lewre divê partiyên kurd ji herdemê zêdetir xwe nêzîkî hevdu bikin. Amedî sipasiya siyasetmedar û mêvanên hatibûn resepsiyonê jî kir û wiha axivî: "Me biryar daye ku em ê bi awayekî xurt di nava siyasetê de cih bigrin. Bi wê armancê me danûstendin li gel hemû partiyan de kir. Ev biryar li siyaseta kurd pîroz be. Em dibêjin PDK-T mala hemû kurda ye. PDK-T ew ê êdî bi awayekî aktîf di nava siyasetê de cih bigre. Ew ê nûnertiya kurdan bike. Ew ê li doza Kurdistanê xwedî derkeve.

**Ahmed Kanî: Hewceye hemû kurd piştgiriya rapirsiyê bikin**

Berpirsê Peyendiyên Navxwe yê PDK'ê û Parlementer Ahmed Kanî jî di resepsiyonê de axivî. Kanî eşkere kir ku hevgirtin û yekitiya partiyên siyasî wan gelekî kêfxweş dike û ew vê biryara yekîtiyê li herdu partiyan pîroz dikin. Kanî herwiha da zanîn ku di qonaxeke wisa de pêdawîstiya kurdan bi yekîti û hevgirtinê heye. Li aliyê din Kanî destnîşanî bi geşedanên li Bakurê Kurdistanê jî kir û wiha berdewam kir: "Şerê me yê li dijî DAIŞ'ê berdewam dike. Ew ê kurd qedera xwe tayîn bikin. Li aliyê din amadekariya ji bo referandûmê jî berdewam dikin. Kurdan biryara xwe daye ew ê çarenivîsa xwe diyar bikin. Hewceye hûn jî piştgiriya rapirsiya kurdan bikin. Hewce dike ku hemû kurd piştgiriya xwe ji bo rapirsiyê bînin ziman."

**"Me hewlda ku proseya çareseriyê bi encam bibe"**

Herwiha Berpirsê Peyendiyên Navxwe yê PDK'ê Kanî bal kişand ser şer û pevçûnên li Bakurê Kurdistanê jî û da zanîn ku Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, ji bo ku proseya çareseriyê berdewam bike û şer dîsa destpê neke gelek hewl da lêbelê ew hewldanên wan bi encam nebûn. Ahmed Kanî wiha axivî: "Cenabê Serok Mesûd Barzanî ji roja destpêkirina şer hewldide ku şer rawestîne. Ji herdu aliyan jî re eşkere dike ku dev ji şer berdin û vegerin ser maseya diyalogê. Em dixwazin alî li hev bikin û dawî li şer bînin. Tiştê ku ji destê Cenabê Mesûd Barzanî dihat, kiriye. Lêbelê alî di şer de berdewam in. Ew îstîkrar û rewşa aram têk çû. Ev ji bo hemû herêmê nebaş e." Kanî di dawiya axaftina xwe jî de da zanîn ku divê kurd divê serdemê de piştgiriya hevdû bikin û li destkeftiyên hevdu xwedî derkevin. Kanî da zanîn ku kurd dikarin bi yekitiyê siberojeke aram li Kurdistanê ava bikin.



Murat Özdemir

Ermeniyên Dêrsimê

# 'Neviyên Keşeyî' jibîrnekin!



Dêrsima ku bi hemû taybetmendiyên xwe ji herêmên Kurdistanê yên din cuda ye, bi awayekî plankirî rastî komkujiyê hat. 4 Gulan 1938'an li dijî herêma Dêrsimê ku proseya jinavbirin û ji holê rakirinê ket meriyetê, operasyona qirkirinê destpêkir û di encama vî planê qirêj de bi hezaran kurd û ermeniyên Dersimê hatin qetilkirin û bi dehhezaran jî hatin sirgunkirin.

Li Dêrsimê ne tenê kurdên elewî, ermeniyên ku ji gelên vê herêmê yên qedîm in jî cara duyem rastî komkujiyê hatin. Ev mijar ji aliyê gel ve zêde nayê zanîn û hebûna ermeniyan a li wê herêmê ji aliyê dewletê ve jî nayê bilêvkirin. Lê belê Dêra Halvori Surp Garabed ku dêra li herêmê herî dawîn hatiye rûxandin e heta salên 1938'an jî li ser piyan bû û ermeniyên ku ji jenosîda 1915'an sax derketin, diçûn wê dêrê û li herêma Dêrsimê îbadetên xwe pêk dianîn.

Nivîskar Kazım Gündoğan ku li ser Ermeniyên Dêrsimê lêkolînan dike û pirtûkên bi navên 'Keçên Dêrsimê yên Winda (Dersimin Kayıp Kızları)' û 'Neviyên Keşeyî (Keşişin Torunları)' ye li ser vê mijarê ji BasNûçe'yê re axivî. Kazım Gündoğan dibêje ku ermenî ne tenê 1915'an de, di 1938'an jî rastî komkujiyê hatine û divê gelên herêmê li ermaniyan xwedî derkeve."

**"Dêrsim warê pêkhateyan ê hevpar e"**

Lêkolîner û Nivîskar Kazım Gündoğan di derbarê Dêrsim û ermeniyên Dêrsimê de dibêje ku bi salan dewletê karesat û komkûjiyên li Dêrsimê wek serhildan nîşan da û wiha diaxive: "Lê piştî salan û lêkolînan me dît ku ev ne serhildan lê belê komkujiyeke plankirî û bi bername hatiye birêvebirin e. Ji xwe ev civak niha di bin feraseta teza dîroka fermî de ye." Lêkoîner Gündoğan dibêje dema wan li ser Dêrsim û komkujiyênwê herêmê çêbûne lêkolîn dikirin, nexwest in ku ermeniyên li herêmê dijîn derveyî xebata xwe bigirin û wiha diaxive: "Li Dêrsimê gelek pêkhate bi hev re dijîn û Dêrsim warê hevpar yê van hemû pêkhateyan e. Herkesek dibêje Dêrsim ya min lê, Dêrsim ya herkesê ye. Ji ber ku dîrok, çand, huner û baweriya hemû pêkahateyan li wir xwe dide der. Li wê derê kurd, ermen, tirkmen û baweriyên elewî, sunî her wiha bi hev re dijîn e. Dema me ev mesele lêkola, me nexwest ku Ermeniyên Dêrsimê li derveyî vê xebata xwe bigirin. Ji xwe me wisa bikira wê hem bûya neheqî û hem jî wê bûbûya kêmasiyek mezin. Ez bi xwe ne ermenî me, lê weke kesekî sosyalîst ez ji wê yekê bawer dikim ku divê herkes û civak bigihe çand û dîroka xwe. Ev weke şîrê maka wan helal e."

**"Dîrokeke derew li ser vî gelî hate ferzkirin"**

Kazım Gündoğan di dirêjiya axaftina xwe de radigihîne ku di destpêka lêkolîna li ser ermeniyên Dêrsimê gelek astengî li pêşiya wan hebûn û wiha rêz dike: "Ji van astengiyan a ewil dîroka fermî ya Komara Tirkiyê bû ku bi dehsalan e li ser vî gelî ferz kiriye. Em bi van derewên dewletê re hinekê mijûl bûn û ev astengiyek bû. Ya duyem jî hin pirsgirêkên ermeniyan hebûn yên di derbarê raboriya wan ya li Dêrsimê û ji bilî vê yekê gelek astengiyên din. Diviyabû em van hemûyan derbas bikin." Gündoğan di derbarê pêkanîna rêbaza lêkolîna xwe de jî dibêje ku 2 rêbazên herî baş hebûn û wiha daxive: "Ji van rêbazan yek lêkolînkirina jiyana kurd, elewî û ermeniyên li herêmê û rêbaza din jî lêkolînkirina belgeyên li ser vê mijarê hatine amadekirin. Di vê mijarê de me ji belgeyan îstîfade kir û me li herêmê jî di qadê de jî lêkolîn kir û xebat meşand.

**"Jenosîd herî zêde li herêmên Dêrsimê pêk hatin"**

Lêkolîner û Nivîskar Gündoğan diyar dike ku ev 3 sal in ku li ser meseleya ermeniyên Dêrsimê lêkolînan dike û belgefîlmeke bi navê 'Zarokên Dêrê (Vankin Çocukları) amade dike. Gündoğan wiha dibêje: "Pirtûka me ya bi navê 'Neviyên Keşeyî' 3 meh beriya niha derket. Li ser vê mijarê xebateke din ya berfireh jî belgefîlma me ya bi navê 'Zarokên Dêrê' li ber xilasbûnê ye. Li Dêrsimê ji bo ermeniyên Dêrsimê tê gotin rastî du komkujiyan hatin. Ji xwe jenosîd herî zêde li herêmên Çemîşgezek, Hozat, Mazgirt û Pertek ên Dêrsimê pêk hatin. Herî zêde li vê herêmê komkujiyên fizîkî çêbûn. Li herêmên din ne bi vî awayî bû.

Gündoğan ev tişt jî anî ziman: "Me lêkolîn kir ku ka piştî jenosîda 1915'an li herêma Dêrsimê ji bilî kurd û elewiyan li dij ermeniyan jî polîtîkayeke taybet heye an. Di vê xebata xwe de me dît ku ev ermeniyên Dêrsimê ne ew kesên ku piştî komkujiyê ji deverên cuda hatine ne û kesên xwecih in û gelekî qedîm yê deverê ye. Me ev bi belgeyan piştrast kir û li vê herêmê ermenî xwedî dîrokek 2 hezar û 600 salî ne. Em li ser çîrokên resen yên ermeniyên wê herêmê kuz ima, çand, dîrok û hunera xwe winda kirine û cihên wan yên îbadetê têk çûne bi rêve çûn. Her wiha ne tenê çandû ziman, ji ber ku li wê herêmê şert û mercên ku baweriya xwe pêk bînin jî hatibûn rûxandin, ji baweriya xwe jî bûn beşek."

**"Bi damezrandina komarê re polîtîkaya tirkkirinê ket meriyetê"**

Kazım Gündoğan da zanîn ku Dêra Halvori Surp Garabed yek cihe ku hebûna xwe heta salên 1937-38'an diparêze û wiha pê de diçe: "Dêra Halvori Surp Garabed, yek dêr e ku heta 1938'an li ser piyan ma û ermeniyên kul i herêmên din diman dihatin wir îbadetên xwe dikirin. Piştî Komara Tirkiyê hat avakirin, destbi pêkanîna polîtîkaya xwe ya yek ziman, yek ol û yek milet ku ya tirkkirinê ye dike. Ji xwe li gor wan 1914 meseleya ruman hatibû çareserkirin, ji 1915'an heta 1920'an jî meseleya ermeniyan tê çareserkirin. Piştî 23'an jî dikevin pey yên mayî û ev ermeniyên Dêrsimê jî dikeiv ber armanca wan. Lê li wê derê rewşeke din heye ku beşek bûne sunî, beşek bûne elewî û beşekê jî taybetmenfiyên xwe parastine. Rayedarên Komara Tirkiyê dest li wan kesên ku bweiya xwe guhertine nedan, lê ermeniyên ku xwedî li çand, ziman û baweriya xwe xwedî derketin bûn armanca dewletê. Ev yek bi belgeyan jî misoger û teqez e. Di vir de em dibînin ku ermeniyên Dêrsimê ji bo dewletê bûne mesele û ji bo Komara Tirkiyê wek talûke tên dîtin." Gündoğan li ser destpêkirina komkujiya Dêrsimê jî wiha dibêje: "Roja 4'ê Gulana 1937'an ku tevgera Dêrsimê destpêkir ewilî mala Seyîd Riza hat bû hedef. Bombebarana duyem jî li dijî dêra Halvori Surp Garabed pêk tê. Ev bombebaran jî ji aliyê keçeke ermenî ku hatiye asîmîlekirin û tirkkirin û weke yekem pîlota şer ya cîhanê tê nîşandan Sabiha Gökçenê ve pêk tê. Ev jî trajîk e."

**"10 kes sax man, ew jî li bajarên Tirkiyê belav kirin"**

Lêkolîner Gündoğan radigihîne ku piştî bombebaranê ermeniyên li herêmê jî tên desteserkirin û wiha pê de diçe: "Herekata li dijî Dêrsimê piştî girtina Seyid Riza (12. 10. 1937) di warê leşkerî de digihije armanca xwe û ji aliyê İnönü ve biryara ku wê plana û polîtîka asîmîlasyonê bidome, tê dayîn, lê belê Kemal Atatürk û Fevzi Çakmak vê yekê red dikin û dibêjin divê ku li dijî wê herêmê herekata 'paqijiyê' bê destpêkirin. Piştî vê yekê ji xwe hêj ne gihijtiye sala 1938'an İnönü îstîfa kir û 1938'an jî komkujiyê destpê kir û Dêrsim hat tarûmarkirin û wêrankirin. İhsan Nuri Çağlayangil jî dibêje ku 'kevir li ser kevir nema, tu zindî nehatin hiştin û gazên jehrî hatin bikaranîn.' Her wiha ermeniyên Dêrsimê jî cara dawîn li dora Dêra Halvori Surp Garabed kom dibin. Ji vê koma ku li dora dêrê kom bû tenê 10 kes sax dimînin û ew jî ber bi kampên li Elezîz û Erzînganê ve tên şandin. Ji wir jî wek yên din li bajarên Tirkiyê tên belavkirin.

**"Divê gelên herêmê li ermeniyan xwedî derkevin"**

Kazım Gündoğan diyar dike ku gelê ermenî rastî du komkujiyan hatin û wiha dewam dike: "Du komkujiyên mezin bi serê ermeniyan hatin. Ji ber wê yekê ji hişan hatiye jêbirin û çalakiyên wan yên siyasî, çandî û rojane hatin jinavbirin, hêza wan hat şikandin. Ji ber wê yekê jî herkesê jî ev rewş bi aweyekê qebûlkiriye. Lê di herêmê hebûna ermeniyan ya li wê herêmê tê axaftin, tê zanîn û niqaş li ser tên kirin. Dewlet jî hewl dide ku vî gelî bide jibîrkirin û ev dîsa li gor wan kesên ku erd û milkiyeta ku ji wan kesan re mayî bikar tînin e."

Gündoğan li ser projeyên xwe yên di rê de jî wiha axivî: "Belgefîlma me ya bi navê 'Zarokên Dêrê' bi dawî bû. Lê mijara ermeniyên Dêrsimê ku me bi pirtûka 'Neviyên Keşeyî' destpê kir, Em ê bi awayekî berfirehtir ku ji hemû aliyan ve û ermeniyên ji her olê bigire nav xwe xebtên xwe bimeşînin."

## Berken Bereh:

# Bîra netewekî di helbesta wî de veşartiye

**Ercan Ekinci**

Xwedî peyvên xwerû û naîf, helbestvanê kurd ê navdar Berken Bereh di derbarê rabirûya helbestvaniya xwe, hûnera xwe û pirtûka xwe ya nû Xewna Dawî de ji BasNûçe'yê re axivî.

Hûn dikarin bi kurtasî qala pirtûka xwe ya nû Xewna Dawî bikin?

Em baş zanin ku helbestkar yek ji endamê civatê ye. Li gel civata xwe dijî, dibihîse, dibine, hîs dike, hêrs dibe... Helbestkar bi vê têkiliya bi civatê re hem xwe hem jî civatê dixwaze binase. Helbestkar û civat û rastiya wê wek şûrê her du serî jî tuj ji hev dixwin û hev diêşînin û her wiha li hev zede jî dikin. Ev têkiliya dualî ji bo helbestkar gelek caran dibe av,xwê û arvanê hevîrê helbestê. Aha helbestkar bi van hemû taybetmendiyên însanî helbestekê an helbestan dinivîse. Xewna Dawî encama vê têkiliya demdirêj ya jiyana min e.

Xewna Dawî, hewldan û helwesteke lixwemikurhatinê ye. Hewldane ke, lew di her helbestekê de çendîn pirs û bersivên li rabirdûya jiyayî tê kirin hene. Bi van pirsan dixwazim kil û kêmasiyên çi takekesî, çi civakî destnîşan bikim da ez/em bikaribin ji bo têkiliyek dûrist bi jiyanê re saz bikin. Helwesteke, lew bi her helbestê hêvîyek ji pola tê ristin, peyamek tê bercestekirin ku daxwaz û xwesteka pêkanîna xewna ez/em tê de dide lotikan. Ev xewn, têgeheke bergeh fireh, pirr wate û tişteke razber û nîgaşî ye. Bêguman xewna ku min di helbesta xwe de neqişandî li ba min jî xwedî çend wateya ne. Helbet ferheng, deng û reng û hêmayên wê divê li gor naverokê be û li hev bikin. Ji ber hindê ta ji min hat min hewl da peyvên bi teql, wate kûr û henûn û ber bi jibîrbûnê ve diçin bi kar bînim. Bi min ev ferheng bi têgeha Xewna Dawî jî li hev digunce.

**Çima Xewna Dawî?**

Wek min li jor vegotî xewn ji hêla wateya çi ferhengî çi hêmayî xwedî çend wateya ne. Min bi zanebûn ev sernav bi kar anî lew, wek şexs ez insanekî pîr im. Pîr bûn rê nade ku wek ciwanekî çend xewnan bi hev re bihizirî, bifikirî û ji bo wan têkevî hewldanê. Bi vê hêz û şiyana xwe encax dikarî barê xewnekê ragirî. Roja xatirxwestina ji vê dinyayê jî nêzîk e. Nexwe; xewna dawî. Ya din wek netew em hê nebûne xwedî serweriyekê. Di gel vê kêmasiyê aşê mêtinkariyê xweş dişixule, li gel zilm û stemkariyê dolaba bişavtinê bilez digere. Hiş, giyan û mêjiyê civakê her kêlîk bi tiştên pûçkirin û dûrkirina ji rastiya xwe tê dagirtin. Helbet ev netewa ber bi pûçkirinê ve tê dehfdan, wek pîrekî ji dest û lep ketiye. Xewna dawî, aşkerekirina vê rastiyê ye.

**Hûn di pirtûka xwe ya navê wê Xewna Dawî de bi hevokek fîlozofê navdar yê Elman Adorno ku dibêje, "Ji bo vegerê jî û ji bo mayînê jî, mal nîn e" destpê dikin. Ev hevok ji bo kurdan tê wateya bê dewletbûnê?**

Ev gotina Adorno wek şûrê bindestiyê ku di nav laşê me de dizivire bi derb e. Wek kesê sere wî li kevirê hedê bikeve û xwe û rastiya xwe fêr bibe bi bandor e. Ev hevok dike ku em li rastiya xwe vegerin; çi tiştên me jiyayî yek bi yek wek filmekê ji nû ve raçav bikin. Hê di wêneyê ewil de em dê bibinin ku em ji her tiştê xwe hatine dûr xistin. Hiş û giyanê me hatiye pûç kirin. Çi tiştê ku me bi jiyanê ve gire bide û hawirdora xwe re li hev bikin nîvco,genî û bi toz e. Ji xwe tişta di van çil salan de hatî sere vê civak û xakê tam jî vê hevoka Adorno diselmîne. Gelo kesek ma ye ku ji ser axa xwe koç nebûyî-çi ji gund ber bi bajêr, çi ji bajêr ber bi bajarek din (niha jî ev koçberiya bi darê zorê berdewam e). Ma kî ji me dikare vegere gund,bajarok,bajarê xwe yê berê, an xortanî, zarokatiya xwe. Bê guman ev talan, serobinbûn, dûrketina ji rastiya xwe, giş encama zilm û stemkariya mêtingehkariyê ye. Ev jî teqabilî bêdewletbûnê dike. Çawa Xanî gotî; "Ger dê me jî hebûya xudanek, alîkeremek, letîfedanek."

**Di pirtûka we ya nû de zarok gelek in. Herwiha hûn ji zarokên kurd re jî dibêjin 'tenê ji bo çekhilgirtinê hatine dinê.' Ev ji zarokên kurdan re qeder e an ji ber siyaseta şaş ya kurdan e?**

Netewek ku ji her mafê xwe yê rewa hatibe dûrxistin di ser de jî ketibin ber pêla bişavtinê û her cure rêyên bidestxweveanîna mafên rewa hatibin girtin ma ji bilî berxwedanê pê ve çi dimîne di destê kurdan de. Ev sedan sal in kurd ji bo mafên xwe yê rewa têdikoşin. Tu cara rê nedane kar û barên dijmirovahiyê. Her xwestine bi rêyên aştiyane pirsgirêkên xwe çareser bikin. Lê ev destê qencî û yê maqûl her rastî zordariyê hatiye. Dîroka kurdan bi nimûneyên vî awayî dagirtiye û her tûşî zilm û zordariyê hatiye. Îro ro li Başûr û Rojava gel di bin metirsiya terora DAIŞ'ê de ye. Li Bakur û Rojhilat kurd ji mafên xwe yê rewa bê par in. Şengal, Kobanê hê birînên necebirîne,bi sedan keç, kur û jinên êzdî hatin revandin, firotin, kuştin. Vêca tişta ku min ji dîroka xwe xwendî û dîtî her ev rastiye. Hêvî dikim ku zarokên me hew ji bo çekhilgirtinê lê ji bo bibin Silhedînê Kurd ê karî bi edaleta xwe cîhanê ji nû ve saz bike. An bibin Mestûre Xanima Lorî, Baba Tahirê Hemedanî an Melayê Cizîrî... Ku bi hûner û ciwankariya xwe bûne nirxên mirovahiyê.



**Di salên dawî de ew bûyer û karesatên ku di nava civaka kurdan de qewimîne we bi zimanekî sîtemakarî ew bûyer û êş anîne ziman. Gelo wê wêje û civaka kurdan çawa ji van êşan xilas be?**

Çarînek Cegerxwîn heye dibêje; "Berê her tiştî kurd im." Bi min ev rist rêya çareseriyê nîşanî me dide. Çaresernebûn û çaresernekirina êşa netewî piçek jî durketina ji vê rastiyê ye. Ger tu xwe nekî navenda çareseriyê û rastiya xwe çi dîrok, çi kultur-fêr nebî, vê rastiyê bi perwerdehiyê dewrî nifşên nû nekî, tu nikarî hiş û mêjiyeke azad biafirînî. Civaka ji rastiya xwe dur ketî, zimanê xwe ji bîrkirî,bav û kalên xwe neyîne bîra xwe nikare bibe hêzeke xurt. Ger li welatekî ji ber axaftin û nivîsandina bi zimanê xwe, kes xwe qure bikin û bibe cihê rêzgirtinê li wir şaşiyek heye. Çawa axaftina bi zimanê dayîkê dibe cihê serbilindiyê? Ma tiştek ji vê normaltir heye. Lê tu dibînî ku em ketine çi rewşê. Ger em bi heman zimanî neaxifîn em ê çawa bikaribin hevkarî û yekitiya xwe saz bikin, gengeşiyên di navbera xwe de çareser bikin, tehemula hev bikin,li hember hev bi tolerans bin? Em baş zanin wêje di avakirina ruh û giyanê netewî de rola sereke dilîze. Çîroka ku em giş xwe tê de bibinin diafirîne. Ji ber vê ya herî bi imtiyaz divê wêje û ziman be.

**We forma taybet a helbesta japonî ku jê re 'Haiku' dibêjin, gelek helbest nivîsandin. Lê ez dixwazim vê pirs bikim; ji aliyê form û teknîkî ve û ji aliyê naverok û mijarê ve Haiku çi qas li helbesta kurdî tê?**

Kurd û xwezaya kurdan hê jî sirûştî ye, hê reseniya xwe dijî. Di çand û kultura me ya devkî û jiyana rojane de gelek mînakên dişibin Haikuyan hene. Em ji nûkte û gotinê hez dikin. Li ser rewşa kêlîka dijîn bi çend peyvên balkêş diaxivin. Derbirîna bi çend peyvên bi derb awayek xweşgotinê ye. Ji xwe Haiku jî ev tişt e. Bi hefdeh kîteyên bi derb vegotina kêlîkê, xweza û rewşa heyî ye. Wekî din Haiku li her deverê dinya yê tê ceribandin, çima kurdiya wan tune be.

**Pêwendiyên kurdan ji wêje û taybet jî helbestê re çawa ye?**

Ji ber ku helbest delala li ber dilê xwînerên xwedî bingehekê ye zêde bala gel nakêşe. Ya din nezanîna kurmancî û tênegihîştina ji helbestê xwîneran xemsar dike. Helbet helbestkar nikare behreya xwe ya ciwankairiyê bike qurbana dîdaktîkê,ji bo bê fêm kirin. Çîrok û roman ji ber asayiya zimanê wê zêdetir bala gel dikêşe. Wekî din gelek kes -bêtirî çîroknûs û romanûs- dibêjin 'dewra helbestê bûriye.' Lê ev hişmendiyeke şaş e. Nemaze ji bo me ku ji zimanê xwe dûr ketiye. Em baş zanin ku hişmendî, feraset û bîra netewekê di helbesta wan de veşartiye. Ew dikare civakê temsil bike. Wek çîroka hirç û hingivê em her li destpêkê vedigerin. Qedirdayîn û axaftina bi zimanê dayîkê dikare van gengeşeyan çareser bike. Ziman, ziman, ziman û bi axaftina wê.



> "Xewn ji hêla wateya çi ferhengî çi hêmayî xwedî çend wateya ne. Min bi zanebûn ev sernav bi kar anî lew, wek şexs ez insanekî pîr im. Pîr bûn rê nade ku wek ciwanekî çend xewnan bi hev re bihizirî, bifikirî û ji bo wan têkevî hewldanê. Bi vê hêz û şiyana xwe encax dikarî barê xewnekê ragirî. Roja xatirxwestina ji vê dinyayê jî nêzîk e. Nexwe; xewna dawî!"

**Hûn ji bo ciwanên ku bi kurdî helbestan dinivîsin, çi pêşniyar dikin?**

Nivîskarên ciwan beriya her tiştî divê bi baldarî wêjeya me bixwînin, analîz bikin û wê bidine beramberî wêjeya cîhanê. Sedemên nivîsandinê û ya nivîsandina xwe bi dilsozî ji xwe bipirsin û ger bersiva van nivîsandin be bila gelek binivîsin lê kêm biweşînin. Divê neyê ji bîrin ko her serkeftin encama kar û xebateke dûr û dirêj e. Her wiha divê neye ji bîr kirin "her giya li ser koka xwe şîn dibe."

**Xewna we ya herî dawî çi ye?**

Welateke azad, serbixwe û demokratîk.

## Fûarê Kitaban yê Dîyarbekirî

# Warê medenîyetan de roşnayî

Yado Kirdone




Fûarê Kitaban yê Dîyarbekirî yo II. hetê Şaredarîya Bajarê Girdî ya Dîyarbekirî emser zî ame organîzekerdiş.

Fûarê Kitaban 17'ê gulane saete 12:00'an de Eywana Resepsîyonê Sumerparke de bi beşdarbîyayîşê/tewrbîyayîşê sereka Şaredarîya Bajarê Girdî ya Dîyarbekirî Gulten Kişanake, hemserekê şaredarîya qezayan, temsîlkarê sazgehê komelanê sîvîlan, wayîrê weşanxaneyan, nuştoxîşaîrî û xeylêk kitabperweran a ame akerdiş.

Akerdiş de bi nameyê Grûba Amadekarîye Mehmet Çakmakî qisey kerdî û wina va: "Bi netîceyê xebata 4 aşman, Fûarê Kitaban yê Dîyarbekirî yo II. ameyo organîze kerdiş, heme weşanxaneyê kurdan, pêro pêser 72 weşanxaneyî beşdarê nê fûarî benê. Temaya fûarê kitaban ya emserine 'azadî' ya. Azadî rê heme waran de îhtîyac est o.

Qiseykerdişê Mehmet Çakmakî ra dima sereka Şaredarîya Bajarê Girdî yê Dîyarbekirî; Gulten Kîşanake qiseyî kerdî û wina va: "TUYAP seba tayê sebeban êdî şaristanê ma de fûar nêakeno. Ma zî tecrubeyê xo yo parên ra dîy ke ma eşkenê nê karî hîna weş organîze bikerê. Dima meymano rumetin, Ehmed Huseynî şîîra "Rojbaş Dîyarbekir" wend. Şîîr wendişî ra dima, Hemşaredare Kişanake, Ehmed Huseynî rê plaket û vilikî dayî.

Fûarê Kitaban bi beşdarîya 72 weşanxaneyan, mabênê 17-22'yê gulane û mabênê saetanê 10.00-20.00'î de Sumerparke de akerde mend.

Wendoxî standanê weşanxaneyan rê eleqeyêko gird nîşan da. Rojê îmzayan de xeylê nuştoxî wexdoxanê xo reyde ameyî têhet û seba wexdoxanê xo kitabê xo îmza kerdî. Goreyê taxmînê Grûba Amadekarîye se henzar kesan ra vêşêr kesî beşdarê fûarî bîyê.

**Roje bi roje fûarê kitaban**

Fûarê Kitaban de roja 17'ê gulane de bi sernameyanê "Modelê Perwerdeyî yo Azadîwaz, Henekê Dîyarbekirî, Edebîyatê Zindan û Koyî, Rojnamegerî û Edebîyatê Musa Anterî" panelî ameyê organîze kerdiş û nê panelan ra ê "Modelê Perwerdeyî yo Azadîwaz" de Seval Kaplan, Mahmut Tuğrul, Necat Ayaz bi moderatorîyê Zeyad Ceylanî de qiseyî kerdî. Nesrin Erdoğmuş û Bedirxan Sindî wendoxanê xo reyde terreqna û semedê înan şîîrê xo wendî. Mevlut Mergenî derheqê "Henekanê Dîyarbekirî", Edip Polat, Salih Sezgin û Mehmet Devirenî zî bi moderatorîyê Azad Zalî "Edebîyatê Zindan û Koyan" ser o qisey kerdî. Salih Sezginî wina va: "Merdim, zorîya ke zîndanî de yena vînayiş ver o edebîyat reyde têkîlî roneno." Edip Polatî zî wina va: "Ma jenarasyonê xo ra zanê, ma 'Şewa Çaran' ver o dest bi nuştişî kerd. Edebîyatê zîndanî edebîyatê macera yo." Mehmet Devirenî zî wina va:"Merdin nêşêno ko û zîndan yewbînan ra cîya biko. Çunke ma zanê ke verê ma de cu û edebîyatêko rastî est o. La çi heyfo ke ma heta nika edebîyatê koyan û zîndanî rê wayîr nêvejîyayê." Dima saete 18:00 de Dicle Anter û Hüseyin Aykolî "Rojnamegerî û Edebîyatê Musa Anterî" ser o qisey kerdî. Goreyê programî bi konserê Mikail Aslanîya roje do biqedîyaynê la çi heyfo ke semedê tezîye konser ame îptal kerdiş.

Roja 18'ê gulane, bi "Eşqo Çetin" îya programê fûarî dest pêkerd. Nê programî de Mehmet Dehswar û Ali Çiftçi qisey kerdî. Dima saete 14:00 de Gökhan Pamukçu, Hüseyin Acar û Mehmet Erolî semedê wendoxan şîîrî wendî. Îbrahim Evirgen "Şexsîyetê Dîyarbekirî yê Namdarî", Eyüp Kıranî zî "Destana Dewrêşê Evdî" ser o qisey kerdî. Eyüp Kiranî wina va: "Her kes Dewrêşê Evdî ra sey merdimêko aşiq behs keno la o duştê dişmenan de semedo ke welatê xo, erdê xo bipawo şer kerdo coka o şehîdê welatê xo yo". Programê fûarî de Kasim Firat, Kerem Serhatlı, Felat Özsoy û Şêx Mizbahî babeta "Şêx Seîd û Embazê Ey", Zeynep Yaş "Ostadê Muzîkê Kurdî", Ronî Warî "Vîrê Komelî", Arzu Demir û Figen Arasa "Cinsîyeto Komelkî û Halê Şoreşî yê Rojawanane" ser ro qalî kerdî. Bi moderatorîya Îrfan Babaoğluyî, Oya Baydar, Şebnem İşigüzel, Kemal Aktaş û Mehdi Aktoprakî "Edebîyat û Hepisxaneyê Dîyarbekirî yo Numareyê 5î", Îbrahim Yurtsever, Muraz Miraz Aslan û Pınar Akdemir "Sey Mîhraqê Xoverdayîşî; Ziwan û Azadî", Demir Çelikî "Xoserîya Demokratîke û Xoîdarekerdiş" ser o qisey kerdî û bi terraqê Mikail Aslanî programê roje qedîyê. Yaş wina va:"Serê dinya de sey kurdan tayê mîlletî bi deyîran, kilaman şînê xo ca anê. Muzîkê kurdan hêzê melodîyanê xo tebîatî ra gêno", Baydar: "Goreyê mi çîyêkê Hepisxaneyê Dîyarbekirî yo Numareyê 5'î de ameyê vînayîş, jenerasyonê neweyî rê tena/ancax bi huner neql benê" Psîkologo komelkî Mehmedi Aktoprakî ard vîrê şarî ke Hepisxaneyê Dîyarbekirî yo Numreyê 5î, mîyanê 10 hepisxaneyê ke dinya de tewr xirabî de yo û va "Tarîxê însanetî de sey sembolê xoverrodayîşî yeno nîşan kerdiş." Parlamenter Kemal Aktaş o ke 20 serre hepisxane de mendo wina va:" Çîyê ke ma derheqê Hepisxaneyê Dîyarbekirî yo Numreyê 5'î de behs kenê tena qismêk o, tayê çî estê ke hema îfade û eşqera nêbîyê", endamê Komîsyonê Edalet û Cigêrayîşî yê Hepisxaneyê Dîyarbekirî İşigüzelî zî wina va:" Merdim wexto ke nuseno xerîbî anceno ancax goştarîkerdiş û rastîya cî ver ameyîş çîyêko cîya yo" goreyê Baydarî xayeyê Hepisxaneyê Dîyarbekirî çin kerdişê nasnameyî bi, coka ganî Hepisxaneyê Dîyarbekirî yo Numreyê 5î ganî sey muze bero awan kerdiş.

Roja 19ê gulane de bi sernameyanê "Îdareyê Herêmî, Edebîyatê Haydar Işıkî de Dêrsim", "Folklorê Kurdan de Vateyê Verênan", "Wendişê Şîîran ê DÎYŞADÎ", "Modernîya Hîkayeya Kurdkî", "Êzidîyî", "Edebîyato Kurdistanî yo Fekkî", "Sûr ra Heta Gever Mewzûyê Şer û Aştî de Ganî Tawiro Rast Çi Bo", "Edebîyat", "Komel û Roşnvîrîye", "Agroekolojî û Ekolojîyo Komelkî", "Rojnuştekê Cûdî" ya panelî ameyî organîze kerdiş û nê panelan de Nihal Yanık, Arslan Özdemir, Vecdi Erbay, Şeyhmus Diken, Abdurrahman Aydoğdu, Mehmet Dicle, Hogir Berbir, Mazlum Özdemir, Feleknas Uca, Ferîdun Birgül, Burhan İşiyok, Çetin Deste, Ehmed Huseynî, Atalay Göçer, Ferat Demiroğlu, Dündar Sansur û Zülküf Güneşî qisey kerdî. Qalî kerdişan ra dima, İhsan Îpek, Hüseyin Acar, Serkan Görgülü, Seyfettin Alkan, Tayfun Kırmızgül û Burhan İşiyokî zî seba wendoxan şîîrê xo wendî. Hogir Berbirî qalî kerdişê xo de waşt bi vatişê xo yo "ewro, cu de çîyêkê benê her çi hîkayeyêk a" bala wendoxan bianco û dewamê qalî kerdişê xo de zî wina va: "Sûr, Cizîra Botan, Nisêbîn û Girgê Amo do ma ra hîkayeyî biwazo. Eke ma nê cayan ra hîkayeyî nênusê, manaya hîkayeyan

> Li Bakûr hefteya borî mijara yekitiya du partiyên Kurdistanî ket rojevê û ev yek jî ji bo yekgirtina partiyên kurd weke gavek girîng û destpêkek hate dîtin û ji baldaran ve bi kêfxweşî hat pêşwazîkirin. Lê belê hêviya yekgirtina herdu partiyên Kurdistanî biencam nebûye û tifaq ji bo bihareke din ma.

# ya kitaban ver o



nêmanena. Eke ma hîkayeyê Dayika Taybete nênuse ma zî sey qirkerdoxanê aye benê." Dicleyî zî wina qalî kerdî:"Folklor bîrêno xorîn o. Eke nuştox biqabîlîyet nêbo wexto ke seba awe şimitişî xo nê bîrî ser o dareno beno ke bikewo mîyanê bîrî û bixenekîyo. Tayê nuştoxî wazenê xeylêk çekuyî bişixulnê û xo îspat bikerê. Eke nuştoxêk wexto ke hîkayeya xo de nameyê vilikêkî bişixulno ganî boya ci zî bizano!"

Roja 20'ê gulane, fûarî bi moderatorîya Gulseren Tekine programê "Verê îslamîyetî Tarîxê Kurdan" a dest pêkerd. Program de Bahoz Şavatayî qalî kerdî. Dima bi sernameyanê "Şîir û Tawir", "Şemeyo Sûr - Anatomîya Yew Cînayetê Kerdoxeşkerayî", "Mela Elîyê Baxustanî û Şîirê Ey", "Arêkerdoxîya Folklorî", "Haysiv ra Heta Stockholm", "Kurdî û Îdareyo Herêmî de Xoserî" ya fûarî dewam kerd. Nê programan de Kadir Çelik, Adnan Doğan, Avjen Argeş, Aydın Alp, Azad Zal, Feradê Dengizî, M. Sait Arzu, Roza Metîna, Seyda Perinçek, Muraz Miraz, Kaan Göktaş, Muharrem Erbey, Doçento Hetkar. Dr. M. Zahir Ertekin, Mahpus Serhedî, Kazım Budak, Ali Çiftçi û Veysel Keserî qisey kerdî. Battal Odabaşı û Ayşegül Devecioğlu zî wendoxanê xo reyde terreqna. Şaîr Hicri İzgörenî bi sernameyê "Eşq ra Gêno Renga Xo"yî wendoxanê xo rê şîirê xo wendî. Şevket Karakişî zî seba wendoxanê xo şîirê xo wendî. Programê fûarî bi amadekarîya Kovara Güney filmî "Hunermend û Cengawerê Şarî Yılmaz Güney"yî ame nawitiş û Tîyatroyê Bajarî yê Amedî bi sernameyê "Bîyayîş Yan Zî Nêbîyayîş"î ya seba beşdarbîyayoxanê/tewrbîyayoxanê fûarî kaye kerd û bi na kaya roja fûarî qedîyê.

Roja 21'ê gulane bi programê Bahoz Baranî ya dest pêkerd û ey sernameyê "Kurdkî Ser o Tesîrê Tirkî" ser o qisey kerdî û nimûneyanê ecêbî goşdarîkerdoxan rê nişan dayî. Dima muhîmîya zîwanî ra û serê ziwanî de asimîlasyonî senîhewa tesir kerdo ra behs kerd bi nimûneyan bala beşdarbîyayoxan ant. Bi moderatorîya Nazdar Kahramanî "Seserrîya Ci de Peymanê Sykes-Picotî û Kurdistan" ser o İsmail Beşikçi qisey kerdî. Programê fûarî bi panelanê "Tradîsyonê Edebîyatê Kurdkî yê Qefqasya de Cayê Wezîrê Eşoyî", "Melqatikê/Dûrikê Mêrdîne", "Kitabê "Ma Çiqas Zaf Terorîstî Kiştê" – Kiştişê Sîvîlan û Bêcezabîyayîş" , "Hîrê Cayî", "Hîrê Ziwanî û Yew Nuştox", "Edebîyato Alternatîf û Azadî", "Nuştişê Tarîxê Kurdan de Cayê Şerefnameyî", "Erjnayîşê Edebîyatê Kurdî yê Klasîkî yê Herêma Amedî", "Edebîyatê Kurmanckî de Hîkayeyê Modernê Verênî û Wezîrê Nadirî", "Kirmancî (Zazayî): Tarîx, Kultur û Nasname", "Romanê Kurdkî de Problemê Kurdî", "Ziwanê Hîstenikî û Şîire", "Azadî û Ziwan", "Siratê Şîire de Roman", "Edebîyatê Kurdî de Ziwano Nerî", "Cinîyê Koçerî – Hikayeyê Koçkerdişî" ya dewam kerd û nê panelan de Lal Laleş, Kawa Nemir, Şener Özmen, Mem Zînistanî, Çiya Mazî, Cengiz Mumay, Celal Başlangıç, Helîm Yûsûf, Remziye Aslan, Muharrem Erbey, İlham Bakır, Yusuf Baluken, Abdurrahman Adak, Mehmed Emîn Hêvîdar, Ercan Çağlayan, Yaqûp Tilêrmenî, H. Kovan Baqî, Serkan Birûsk, Îrfan Amîda, Selim Temo, Janset Karavin, Mazlum Çetinkaya, Adar Jiyan, İlhami Sidar, Bawer Rûken, Netice Altun, Gulgeş Deryaspî, Sevim Korkmaz Dinç, Emine Şimşek Emiral, Birsen Unal qisey kerdî.

Ercan Çağlayanî derheqê name, erdnigari, ekonomî û nufusê kirmancan ra, xonamekerdişê kirmancan û hetê şaranê bînan ra, namebîyayîşê kirmancan ser o bi çimeyanê ereban, usmanîyan, rojawanijan û sewbîna çimeyanê eslîyanê bînan dergûdila behs kerd û nê namekerdişî bi tesîrê mezheb û mintiqayan reyde îzah kerdî. Û erdnîgarîya ke tede kirmancî ciwîyenê, çimeyanê înan ê ke pê debara xo kenê, derheqê dîn, kultur û cuya komelkî, meselaya eşîretan ra û meselaya dîkotomîya ziwan û lehçe ra behs kerd.

Roja pancin de bi amadekarîya Jîngehî nawitişê fîlmanê ke bi nameyanê "Hîkayeya Çîyan, Hîkayeya Awa Şûşeyan, Çewlîgê Pan Pan" ameyê nawitiş.

Roja peyêne ya fûarî de panelanê ke bi sernameyê "Hîkayeyê Kurdkî ya Modern", "Kitabê Femînîzmî", "Pîremêrd û Tîyatroyê Kurdî", "Formgirewtişê Edebîyatê Kurdkî de Tesîrê Edebîyatê Fekkî", "Akademîyê Azadî", "Komel û Aştî", "Edebîyato ke Hepisxane de Vejîyeno", "Ereykewtişê Romanê Kirmanckî û Problemê Ey", "Edebîyatê Kirmanckî (Zazakî) yo Klasîk", "Gama ke Tirkîya Gevizîyena", "Rojhelato Mîyanên de Hemsencê Vurîyayeyî û Kurdî", "Bi Ravêrdeyê Xo Ya Cinî Senîn Şena Azad bo", "Şîirê Xoverdayêrî, Vîrê Ma Yo Komelkî: Bi Şahidan A 12yê Êlule", "Edebîyatê Mehmed Uzunî", "Cehdê Kurdistanî yo Reyayîşê Neteweyî de Dr. Şivan (Sait Kırmızıtoprak)" ya dewam kerd. Nê roniştişan de Erol Şaybak, Mihemed Şarman, Şêxo Fîlik, Hülya Osmanoğlu, Çetoyê Zêdo, Memê Mala Hinê, Dilawer Zeraq, Bedran Hikmet, Muzaffer Kaya, Çetin Guner, Aslı Vatansever, Ayşegul Tozeren, İsmail Dindar, Pınar Yıldız, Bilal Zîlan, Murat Paker, Faik Bulut, Yusuf Karataş, Cengiz Mumay, Celal Başlangıç, Kemal Şahin, Sevim Korkmaz Dinç, Rıfat Mertoğlu, Şehmus Diken, Edip Polat, Şener Ozmen, Selahattin Ali Arikî wendoxan reyde ameyî têhet, terraqna, zanayîşê xo pare kerdî. Berken Bereh, Lal Laleş, Roza Metîna, Avjen Argeş û Nûroj Mûnzûre zî bi sernameyê "Şîirê Xoverdayêrî" ya şîirê xo wendî.

Pınar Yıldızê, sebebê ereykewtişê romanê kirmanckî û taye problemanê ci ser o vinderd. Aye romanê kirmanckî yê ke sey, Kilama Pepugî, Soro, Kalaşnîkov, Gula Çemê Pêrre, Sosin û Gulîzar, Deyndar û Zifqêra Berî, ser o şîrove û tesbîtê xo goşdarîkerdoxan reyde pare kerdî. Dima edebîyatê miletanê dinya de destgirewtiş û vilabîyayîşê romanî , destpêkê romanî ra heta ewro prosesê romanî de çi vurîyayê, edebîyatê kurdan de halê romanî ra behs kerd û wina va: "Roman bi xo wayîrê tayê xususîyetan o, no semed ra problemê romanî tena problemê ziwanî nîyê. Ganî unsurê romanî mûnite, karakterî, ca û wext baş bêrê şuxulnayîş. Sey destpêkê romananê şaranê bînan, romananê kirmanckî de zî mûnite û karakterêko pêt çin o. Sîyaset romanan de ge-ge kalîteyê edebî fîneno. Wendoxê romanê kirmanckî zaf tay ê, roman nêameyo rexnekerdişî". Bilal Zilanî zî "Edebîyatê Kirmanckî yo Klasîk" ser o qisey kerdî. Dima nê persan rê cewabî dayî: Kirmanckî de edebîyatê klasîkî çi wext destpêkerdo? Edebîyatê klasîkî de nimûneyê muhîmî kamcînî yê?

Goreyê tewiran edebîyato klasîkî senîn tasnîf beno? Dima tayê nimûneyî dayî û kitabê şîirî yê ke bi terzê klasîkî de ameyê nuştiş goşdarîkerdoxan rê nîşan dayî.

Wendoxanê kirmanckî xususen Weşanxaneyê Vateyî rê eleqeyêko pîl nîşan da. Wendoxê ciwanî standê Weşanxaneyê Vateyî de nuştoxê M. Malmîsanij, Mehmud Nêşîte, Newzat Valêrî û Deniz Gündüzî reyde terreqnayî û nuştoxan zî seba wendoxan kitabê xo îmza kerdî. Wendoxê kirmanckîyî Weşanxaneyê Vateyî ra teber Weşanxaneyê Roşna, Peywend, APEC û Aramî rê zî eleqeyê xo nawit.

Emser xususen kitabanê ke newe vejîyayê zaf raxbet dî. Romano verên yê kirmanckî yo ke hetê yew cinîye ra, hetê Nadîre Guntaş Aldatmaze ra, ameyo nuştiş, Piltane zaf raxbet vîna. Ney ra teber kitabê Malmîsanijî yê "Kurmancca İle Karşılaştırmalı Kırmancca (Zazaca) Dilbilgisi", kitabê Newzat Valêrî; Wexto Vindîbîyaye, kitabê Sînan Sutpakî Jutenya, Kitabê Ercan Çaglayanî Zazalar, Kitabê Merdimînî Dîwano Nêmcet, Kitabê Mikail Aslanî Xayîs, Mihanî Licokicî Meymanê Homayî û kitabê Roşan Lezgînî "Toplumsal Kürd Gruplarından Zazalar" zî hetê kitabperweran ra xeylê rexbet vîna.

Fûarê kitaban de mîyanê 6 rojan de sey; panel, semîner, şîirwendiş, tîyatro û konserî 75 programî ameyê organîzekerdiş û nê programan de zafziwanî tercîh bî.

Fûarê bi govend û tîlîlîyanê xebatkaranê weşanxaneyan û beşdarbîyayoxan roja 22'yê gulane qedîya.



BasNûçe 30 Gulan - 5 Hazîran 2016

## Bêkes Nûrî Evdal

# Dengê bêkesiya kurda

Çinar Doskî



Hunermend Bêkes di serdema karesata Enfala Başûrê Kurdistanê de, di bin bombebarana firokeyên rejîma Baasê de, di şikeftekê de jidayik dibe. Hê ew yek sali bûye bavê wî yê Pêşmerge ji aliyê hêzên ewlekariya rejîma Saddam ve tê girtin û wenda kirin. Heman salê jiber nexweşiyek dijwar, piyêkî wî lawaz dibe û seqet dimîne. Jiyana wî ku zarokatiya wî hemû awayê dijwarî, nexweşiyên Enfalê û herwiha hêjariyê di navxwe de dihewîne, bi dest avêtina hunerê tê guhertin. Ew niha hunermend û kanûnjenek naskirî yê herêma Behdînan û Başûrê Kurdistanê ye û ji bo pêşdebirina hunera kurdî, dixwîne û kar dike.

Hunermend Bêkes Nûrî Evdal di 17'ê Îlona sala 1987'ê li Geliyê Bîrê yê devera Muziriyan a herêma Behdînan ji dayik dibe. Ew di nav malbatek 7 bira û 5 xwîşk de birayê biçûk e. Bêkes wiha behsa jiyana xwe dike: "Ez di wî şkeftê de jidayik dibim. Dayika min gelek caran behsa wê rojê dikir û ez jî gelek caran diçim wê şkeftê ku weke destpêka jiyanê bo min pîroz e. Bavê min ligel herdu birayên min ên mezin Pêşmerge û qaçax bûn. Di sala 1988'ê de vegeriyane mal û hingî leşkerên rejîmê malbata me tev de li kamyonan siwar kirin û birine Kampa Behrîkê ya Hewlêrê. Wê demê xelkê gundên ku hatibûn hilweşandin, di kampan de dihatin ragirtin. Jiyanek nîv zîndanî bû. Jixwe li wî kampê şeva 18'ê Cothema sala 1988'ê, leşkerên Saddam jiber doza kurdîniyê bavê min girtin û birin, paşe me tu agahî jê negirt. Dihate gotin ku kesek caş û sîxorê rejîmê ku zilm û zordarî li xelkê dikir, bavê min jî li hember wî derketiye, ev jî bûye tawana girtina wî. Hingî ez yeksalî bûm û nexweş bûm. Jiber nexweşiyek giran jî piyê min lewaz ma. Di van şertan de birayê min ê mezin navê min danî Bêkes."

Bêkes Nûrî Evdal dibêje dayika wî di nav şert û mercên giran de 12 zarokên xwe xwedan kirine û ew mezin kirine, lewma jî him bûye dayik û him jî bûye bav ji wan re û wiha dibêje: "Dibêjin welat û nîştîman mîna dayikê ye. Rast e. Dayika min mînakek ji nîştîmana me bû. Di xerîbiyê de, di bin zulm û stemê de, di nav şertên hejariyê de zarokên xwe xwedan kirin, parastin û himêza xwe bo hemûyan vekir. Mixabin, ew jî zû çû ser dilovaniya Yezdanî. Bavê min piştî hate girtin, dihate gotin ku di girtîgeha Ebû Xureyb a Bexdayê de ye. Di sala 2003'ê de dema rejîma dîktator hilweşiya, li bergenameyan hate meyzekirin. Hingî derket ku bavê min piştî girtinê du mehan, her di meha Kanûn a sala 1988'ê de, hatiye gulebaran kirin, lê heta niha jî ev agahî nehatiye piştrastkirin û tirba wî jî nîne. Dayika min, bi rola bav jî rabû. Piştî vekêşandina hêzên dagirkeran ji Herêma Kurdistanê, dayika min mala me vegerande Duhokê. Li vir zarokên xwe şand xendinê wan."

### "Jiyana min a hunerî di zarokatiyê de destpê kir"

Heskirina Bêkes ya ji bo huner û helbestan hê di zarokatiya wî de destpê dike. Ew diyar dike ku di destpêka salên 1990'î de gelek hunermendên naskirî yên devera Behdînan hatine û di mala wan de dîwan danîne û stran gotine, vê yekê jî karîgerî li wî kiriye û ji wê demê pê ve lipey huner û mûzîkê ve çûye. Bêkes wiha dibêje: "Birayê min ê mezin Evdal, saz dijeniya. Hunermendên naskirî yên weke Osman Cemîl û Mehmûd Bamernê jî di dîwana mala me de amadebûn, stran gotin. Ez jî di dîwana wan de bûm û dixwstin ku ez jî stranan bêjim. Di sala 1998'ê bi handana mamaostayê min, min dest bi gotina stranên zarokan kir. Di navbera salên 1998 û 2003'ê, klîbên min hebûn ku di televîzyonên herêmê de dihatin pexşkirin. Weke mînak strana "Yekbûna Kurdan" a "Pêşmerge" gelek dihatin hez kirin. Herwiha ez di Koma Kurdistanê de bûm û stranên min û hevalên min bûne CD hatin belavkirin. Di sala 2004'ê de beşdarê ezmûnên Peymangeha Hunerên Ciwan bûm û 4'em derketim. Bi vî awayî min dest bi xwendina vî beşî kir. Di peymangehê de divêya her xwendekarek bo xwe amêrek mûzîkê hilbijêre. Yekem sal bû ku amêrê kanûn hatbû peymangehê nû bû û kêm kesan ev amêr hilbijartibû. Jixwe amêrê kanûnê di mûzîka kurdî de jî kêm hatibû bikaranîn. Bi vî awayî hevaltiya min ligel kanûnê destpê kir û 5 salên peymangehê min li ser vê amêrê wane dîtin.

### "Armanca min pêşvebirina mûzîka kurdî ye"

Hunermend Bêkes Nûrî Evdal bi astek bilind û serkeftî ji Peymangeha Hunerên Ciwan derdikeve. Di her pênc salên peymangehê de bi deng, helbest û stranên xwe beşdarê konsertên peymangehê dibe. Di van salan de sirûda wî ya bi navê "Kurdistan" dibe klîp ku hemû xwendekar û mamostayên peymangehê jî di nav de cîh digrin. Piştî peymangehê ji bo lîsansa bilind a hunerê berê xwe dide Hewlêrê. Bêkes wiha behsa daxwaza xwe ya xwendinê dike: "Ez di nava 5 xwendekarên sereke yê peymangehê de bûm. Lewma daxwaza min ew bû ku ez xwendina mûsikê berdewam bikim û bi vî armancî di sala 2009'ê de hatim Koleja Hunerên Ciwan li Hewlêrê û min 4 salan li vir xwend. Paşî salû nîvekê bûme mamostayê vê kolejê. Di vê heyamê de em beşdarê çendîn festîlana bûn. Lê daxwaza min her xwendin bû. Li ser vê armancê min li Zanîngeha 100. Yıl a Wanê li Beşa Mûzîkê dest bi xwendina lîsansa bilind kir û berdewam jî dikim. Min divê heta bikarim bixwînim û zanîna xwe ya akademîk a huner û mûzîkê pêş de bibim. Armanca min ew e ku xizmetê ji huner û mûzîka kurdî bikim. Ne tenê li ser asta Kurdistanê, li ser asta hemû cîhanê bidim naskirin. Ev yek bo min xewne û bo vî dijîm û kar dikim. Herwiha armanca min ew e ku bibim serpereşt da ku li Duhokê jî di Koleja Hunerên Ciwan de beşa mûzîkê bê vekirin."

Hunermendê ciwan bi tevê xwendinê di nav komên mûzîkê û ligel hunermendên navdar jî kar kiriye ku yek ji wan jî hunermend Zahîd Birîfkanî ye. Bêkes wiha behsa karên xwe dike: "Di sala 2008 û 2009'ê ligel hunermend Zahîd Birîfkanî min jî cihê xwe di nava Koma Badînan de girt. Birastî Brîfkanî hunermendek mezin ê Kurdistanê bû. Paşî heta sala 2012ê min ligel hunermend Ebdullah Zêrîn di Koma Zerîn kar kir. Di heman demî de me çar hevalan bo xwe komek serbixwe ava kir. Em bi awayek serbixwe tenê ji bo pêşxistina mûzîka kurdî kar dikin. Heta niha 3 klîbên me hene û hemû karên çêkirin, tomarkirinê jî em bi derfetên xwe ji berîka xwe dimezixin."

### "Divê hunermendê kurd pir alî be"

Bêkes diyar dike ku divê hunermendên kurd pir alî bin. Ew dibêje, jiber rastiya dîrok, çand û hizra civakî, di hunera kurdî de, diyardeyên weke êş, azar, xerîbî, mişextîbûn û evînên bi bengî jî derdikevin pêş û herdem huner hewl dide van bi zimanek guncayî bilêv bike û wiha dibêje: "Huner jiyan e û ez alîgirê jiyanê me. Jiber vê jî dikarim ligel hemû cudahiyekê bijîm. Gelek caran cûdahiyên me, an ku nasnameyên me, ne bijardeyên me ne û em nikarin ji wan birevin. Lê ev nayê wê wateyê ku hemû nexweşî, nebaşî û kevneperestiyan jî qebûl bikim. Jixwe hunermend ew kese ku civakê ji van têgehên çewt rizgar dike. Di jiyana xwe de her dem ez hewl didim astengiyên li pêşiya xwe derbas bikim û tekoşînê berdewam geş bigrim. Divê takekesên kurd, jiyanê têbigehin û hewl bidin tenê wek mirov bijîn, eşîret, ol, binemal û nebe asteng li ber jiyana wan. Jixwe em civakek wesa ne ku hemû mafên me hatine xwarin û em piştî tekoşînek dijwar nû digehin wan mafan. Di ser van de jî hemû astengiyek di nava civakê de me jî diêşîne. Kurd di siyasetê de ne serkeftî ne û nekarîne mîna gelên din siyasetê bixin bin xizmeta doza neteweyî. Herwiha ne yekgirtî û birêxistinkirî ne. Ez ne siyasetvan im û ne civaknas im. Lê jiber rastiya civakê, naçarim weke siyasetmedarekê bim û civaknasek bim. Bi nêrîna min, divê hunermendê kurd pir alî be, xwedan nasnameyek wiha dewlemend be."

### "Xewna min weke ya hemû kurdan dîtina dewletê ye"

Bêkes Nûrî Evdal rexne ji wan kesan digre ku ji bo endustrîkirin û bazirganî kirina huner û mûzîkê kar dikin û dibêje; "Birastî jî zirar didin huner û mûzika kurdî. Ew mûzîkên ku tenê gotin kurdî ne, hest, awaz û şêwaz ne kurdî ne, nabin berhemên hunerî. Mixabin, kanalên televîzyonan ên bazirganî jî, pêşiya wan vedikin. Li ser wan xwe xwedan dikin." Bêkes, derbarê xewna xwe de jî wiha diaxive: "Herweke helbestvanên mezin ên kurd jî gotine. Xwezî me dewletek heba, xwedanek heba. Xewna min jî weke her takekesek kurd, gehiştina serxwebûn û azadiyê ye. Ger dewleta me hebe wê em jî bikarin bi dilek rehet dîrok, çand, huner, dabûnerîtên xwe biparêzin û roj bi roj şaristanî pêşbixin. Wê hingî siyaset jî, çand û huner jî, aborî jî û aramî jî pêşbikeve. Wê hingî asta zanebûna civakê bilind bibe û bigehe astek hemdem."